BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 69 7 - 13 Îlon 2015 basnews.com

**Mesut Kara:**
## Di rêçên Yılmaz Güney de sînemaya kurdî
R16





# YNK û Goran di qeyranê de bi israr in

Li Herêma Kurdistanê li gel şer, qeyrana aborî û grifta pêdiviyên civakî, asoya çareseriya qeyrana siyasî ya ku li ser şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê û sînorê desthilatiya wî rû da ne diyar e. Li gel hişyariyên qeyranê û bangewaziyên çareserkirina aqilmend, kesayetên siyasî, dostên kurd ên cihanê û fermandarên Pêşmerge jî, israra YNK û Goran ya berjewendperest, RHK'ê ber bi xetereke tarî ve dibe.

Sê hefte berê, piştî hewldanên Barzanî û hin siyasiyên gîring ên ji bo qeyran bi diyalogê bê çareserkirin, partiyên siyasî li hev civiyabûn, li ser xalên ku wê qeyranê bi diyalogê çareser bikin li hev kiribûn û ev yek hêviyekî peyda kiribû. Lê YNK, Goran û Komele, li ser şêweya hilbijartinê her carê maniyên nû peyda dikin û qeyrana heyî dibe sedema aloziyên mezintir û berjewendiyên gel û sexwebûn dikevin xetereyê. R02 - 03



## Peşmergeyên Rojhilat berê xwe didin Îranê

Peşmergeyên partiyên Rojhilat ew demeke ku baregehên xwe li sînorê Rojhilat û Başûr ava dikin û pêyamên ku ewê şerê Îranê bikin radigihînin. Beriya demekê PDK-Î'yê diyar kiribû ku wê êdî berê xwe bidin welat. Herwiha HDK'ê jî heman biryar stend û berê Peşmergeyên HDK'ê li Rojhilat e. R06

## Rojava di rêya tariyê de!

Trajediya kurdan a ku di serdema 21'an de bi destê DAIŞ û komên din ên tundirew didome, gihîşt asteke tirsnak ya ku cîhanê mat dihêle. Piştî ku DAIŞ'ê berê xwe da Kurdistanê û bi taybetî jî li Rojava wehşeteke bêhempa belavkir, hemû bajar û navçeyên herêmê zivîrin qada heşermeşerê. Herwiha di heman demê de PYD ya ku li Rojava xweserî ragihand û kanton avakir jî êdî nikare çareyekê ji gel re bibîne da ku rê li ber koçberiyê bê girtin.



R04-5

**Selam Abdula:** R07
## Stûnnûsî û nîrê polîtîkayê

**Kamîz Şadîdî:** R08-9
## Siyaseta rûsan a bo kurdan taktîkî ye

## Navenda Zerdeştiyan vebû
R12

# YNK û Goran di qeyranê de bi israr in

Mustafa Turan

Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) li gel şer, qeyrana aborî û grîfta pêdiviyên civakî, asoyê çareseriya qeyrana siyasî ya ku li ser şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê û sînorê desthilatiya wî rû da ne diyar e. Li gel hişyariyên qeyranê û bangewaziyên çareserkirina aqilmend, kesayetên siyasî, dostên kurd ên cihanê û Fermandarê Pêşmerge jî, israra berjewendperest a hin partiyan, RHK'ê ber bi xeteriyeke ku bi hevkarên derî Kurdistanê hatiye çêkirin û siberoja RHK'ê tarî dike ve dibe. Sê hefte berê, piştî hewldanên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û hin siyasiyên grîng ên ji bo qeyran bi diyalogê bê çareserkirin, partiyên siyasî li hev civiyabûn, li ser xalên ku wê qeyranê bi diyalogê çareser bikin li hev kiribûn û ev yek hêviyekî peyda kiribû. Piştî ku Îranê ji bo berdewamiya serokatiya Barzanî YNK'ê û Goran hişyar kir, hemû partî li ser 2 salên din jî berdewamiya serokatiya Barzanî hembiryar bûbûn, lê belê dûre dest bi nîqaşên şêwaza hilbijartina serokatiyê kiribûn. Her çiqas YNK, Goran û Komele, li ser şêweya hilbijartinê her carê maniyên nû peyda bikin jî qeyran pêşî li aloziyên mezintir vedike.

### Endamê Polîtburoya YNK'ê: Dibe ku xewna serxwebûnê têk biçe

Herçend PDK ji bilî israra şêweya ji alî gel ve hilbiartina Serokê Herêmê, di hemû xalên ku nîqaş li serê têne kirin de neisrariya xwe ragihîne jî, YNK û Goran, di xalên şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê û kêmkirina desthilata wî de israr dikin. Berpirsê Polîtburoya YNK'ê Dilşad Abdulrehman, di nirxandina xwe ya egerên ku dikare ji vê qeyrana siyasî rû bidin de hişyariya ku ev qeyran berdewam bike, dikare rêveberiyeke dû serî peyda bibe kir û got: "Dibe ku qeyran xewna serxwebûnê têk bibe" Abdulrehman anî ziman ku qeyran ji ber helwestên berjewendperest ên partiyan afirî ye û destnîşan kir ku ev dikare hemû pêşketinên RHK'ê têk bibe. Abdulrehman wiha dom kir: "Helwesta YNK, Goran, Komele û Yekgirtû ku di 23'ê Hezîranê de pêşnûmayasaya ku hilbijartina Serokê Herêmê radestî parlamenê dike, pêşkêşî parlamenê kirin, helwesteke şaş bû. Tu partî ne li dijî berdewamiya serokatiya Barzanî ne. Ji ber vê yekê ev YNK di nav xwe de jî tê rexnekirin. Nabe ku YNK bibe dûvê Tevgera Goran"

Berpirsekî din ê YNK'ê, Serokê Navenda Lêkolînên Stratejîk a Kurdistanê Ferîd Eseserd jî anî ziman ku di hevdîtinên 5 qolî yên partiyên siyasî ku hê jî dom dikin de rîwangeyên partiyan ji hev pir dûr in, ji ber vê yekê egera çareseriyê zortir e û daxwazên PDK'ê jî hilbijartineke pêşwext nîşan didin.

Eseserd anî ziman ku sê xalên grîng ên Yasaya Serokatiyê, sînorê desthilatî û şêweyê hilbijartina serok pêşî li çareserkina pirsgirêkan digirin û got: "Lê belê pirsgirêka bingehîn ji alî gel ve yan jî ji alî parlamenê ve hilbijartina Serokê Herêmê ye. Eseserd da zanîn ku çavdêriyên wî pir hêvîbar nînin û angaşt ku hemû daxwazên PDK'ê yên wek; Bila serok ji alî gel ve bê hilbijartin, bila şêweyê hilbijartinê bi referandûmê ji gel bê pirsîn û bila serokatiya Mesûd Barzanî 2 salên din bê drêjkirin di rastiyê de heman tişt in û got: "Ev tê wateya Hilbijartina Pêşwext"

### Felakeddin: Partî li hev nekin hilbijartinên pêşwext tên rojevê

Parlamena PDK'ê Lîza Felakeddîn jî di dîdariya BasNûçe'yê de diyar kir ku aliyên siyasî ta radeyekê nêzîkî hev bûne, lê belê ji ber ku daxwazên wan ji hev pir dûr in, egerî heye ku hilbijartina pêşwext bikeve rojevê. Felakeddîn ragihand ku hemû partî li ser berdewamiya serokatiya Mesûd Barzanî hevbiryar in, lê belê li ser şêweyê hilbijartina serok hevbiryarî zehmet e.

Di derbarê destwerdana dewletên cîranê Herêma Kurdistanê de jî Lîza Felakeddîn anî ziman ku ev tiştekî pir asan e, lê belê ya grîng helwestên partiyan e û dom kir: "Îran, Tirkiye û heta Iraq'a ku em wek fermî grêdayî wê ne jî, dixwazin vê qeyranê li gor berjewendiyên xwe bikar bînin. Lê belê em partiyêyên Kurdistanî, tenê bi diyalogê û paşve gav avêtinê dikarin pirsgirêkên xwe yên wek; Şerê li dij DAIŞ'ê, meseleyên budce û frotina petrolê, koça ber bi Ewropa ya ciwanên kurd û hemû pirsgirêkên din çareser bikin. Ger bi vê şêweyê nebe egera herê kêmxeter, wê hikûmet hilweşe û hilbijartinên pêşwext bêne kirin"

Lîza Felakeddîn her wiha da zanîn ku beriya komcivînên 5 qolî destpê bikin, rewşeke alozbar peyda bûbû û egeriya xeteriya pevçûnan pêkan bûbû û got: "Lê piştî banga Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya ji bo 5 partiyên siyasî li hev bicivin û şandeyên Amerîkî, Îngilîzî û ya Neteweyên Yekbûyî hatin û ketin dewrê rewş hinek aram bû. Ev şandeyên biyanî ji bo navbeynkariya partiyan bikin beşdarî hin civînan bûn, beriya kombûna yekemîn a 5 qolî Tevgera Goran ragihand ku ew ê beşdarî kombûnê nebe, lê piştî ku ev şande ketine dewrê Goran razî bûye ku beşdarî kombûnê bibe"





### Mîranî: Divê serok ji aliyê gel ve bê hilbijartin

Di derbarê qeyranê de Sekreterê Polîtbîroya PDK'ê Fadil Mîranî ji daxuyaniyek da û got, "Nabe ku îradeya gel bê piştguhkirin û divê serok ji aliyê gel ve bê hilbijartin." Mîranî pêşniyaza rêya sêyem kir û got, "Eger alî li hev nekin, bila ev pirs ji bo xuleke din a parlamenê bimîne; Lewre ev parlamen di civîna 23'ê Hezîranê de bû cihê şikandina îradeyê"

Mîranî amaje kir ku Barzanî ji bo gelê Kurd bûye sembola niştimanî û da zanîn ku pêwendiyên Barzanî yên li gel welatên cîhanê pir xurt û berfirehtir in. Sekreterê Polîtburoya PDK'ê balê kişand ku namzetê PDK'ê yê serokatiyê Barzanî ye û di 2005'an de wek serok ji aliyê gel ve hatiye hilbijartin. Lê ew aliyên ku îro dibêjin; 'Bila parlamento serok hilbijêre' wê demê digotin; 'Divê gel serok hilbijêre' Mîranî da zanîn ku aliyan li ser 13 xalan li hev kirine, lê belê li ser dû xalên girîng ên; Şêweya hilbijartin û sînorê desthilata serokatiyê, hê jî li hev nekirine.

### 'Qeyran dikare referandûma herêmên bi nakok taloq bike'

Bi êrîşa DAIŞ'ê ya Herêma Kurdistanê re, Hêzên Pêşmerge pengava bidestxistina Herêmên bi Nakok dane destpêkirin û kontrola leşkerî û rêveberî ya van herêman xistin destên xwe. Piştî vê serkeftinê pêkanîna maddeya 140 a referandûma ku ji dema serokwezîrtiya Malîkî ve tên taloqkirin û wê şêniyên van herêman rêveberiya ku dixwestin pê ve bêne grêdan diyar bikirina disa kete rojevê. Fîza Felakeddîn da zanîn ku beriya qeyrana siyasî ya RHK'ê, li van herêman amadekariyên referandûmê hatibûn destpêkirin, lê belê piştî qeyranê ev amadekarî jî rawestiyan e. Felakeddîn di derbarê vê mijarê de wiha axivî: "Herçend ev herêm wek defakto di bin kontrola Hêzên Pêşmerge de bin jî, heta ku referandûm neyên kirin an jî serxwebûna Kurdistanê neyê ragihandin, wek fermî tu wateyeke vê destkeftinê tune ye. Hemû pirsgirêkên ku niha serê RHK'ê diêşînin wek xelekên zincîrê bi hev re grêdayî ne. Lê belê ev qeyrana dawî hemû rêgehên çareseriya qeyranên dinê girtiye. Ji ber vê yekê divê partiyên siyasî asta daxwazên xwe bêtir daxînin xwarê û rê li ber çareseriyê vekin"

Ji alî din ve Serokê Parlamena Kurdistanê Yusif Mihemed di serdana bi Serbalyozê Hewlêrê yê Îngilîstanê Engos Miky ya parlamenê de amaje kir ku divê ev qeyran di bin banê parlamenê de bê çareserkirin. Mihemed diyar kir ku rûdana qeyranê rûdaneke asan e, ya grîng ew e ku çareserkirina wê bi rêbazên yasayî be. Mihemed, her wiha ji bo piştgirîdayîna RHK'ê spasiya hikûmet û gelê Îngilîstanê kir. Serbalyoz Engos Miky jî da zanîn ku qeyrana ku li Herêma Kurdistanê rû daye meseleyeke navxweyî ye û nabe ku ew alîgiriyê bikin. Milk diyar kir ku ew alîgir in ku ev qeyran bi lezgînî û bi rêbazên demokratîk bê çareserkirin.

### Kerkûkî: Ne qeyran ne jî çeka kîmyewî bandorê li Pêşmerge nake

Fermandarê Hêzên Pêşmerge yên Eniya Kerkûkê û Serokê Berê yê Parlamena Kurdistanê Dr. Kemal Kerkûkî, pirsên me yên di derbarê rewşa eniyên şer, bandora qeyrana siyasî ya li ser Pêşmerge û ji alî DAIŞ'ê ve li dij Pêşmerge bikaranîna çekên kîmyewî de bersivand. Kerkûkî di derbarê operasyonên ku Hêzên Pêşmerge dû hefte berê li herêma Kerkûkê dane destpêkirin de diyar kir ku li gor pêwîstiyên şer, wê ev operasyon berdewam bibin. Kerkûkî da zanîn ku Pêşmerge li gor etîka şer û peymanên navneteweyî yên şer hildiweste, lê belê DAIŞ, li dij Pêşmerge çekên kîmyewî bikar tîne. Kerkûkî got: "Li gel hemû rêbazên hov ên şer jî wê Pêşmerge rê nede ku DAIŞ bihûstek axa Kurdistanê di dest xwe de bigire. Dema ji derve tê temaşekirin wek ku Pêşmerge hêdî tevdigere û derxistina DAIŞ'ê ji van herêman dereng dikeve, lê belê divê cûdahiyên DAIŞ û Pêşmerge baş bêne zanîn; Lewre Pêşmerge bi hendazeya parastina jiyanên sivîl, mal û canên hemwelatiyan û siberoja Kurdistanê û di çarçoveya rêzikên şer ên peymanên navneteweyî tevdigere û şer dike. Li aliyê din rêxistineke ku misqalek ji nirx û pendên mirovahiyê wernegirtiye û tu rêzikên şer bi cih nayîne heye û Pêşmerge li dij vê rêxistinê şer dike. Ji ber vê yekê pêwîste ku Pêşmerge bi sebirek mezin, bi baldarî û stratejîk tevbigere. Lê bila tu kes gumanê neke, çimku bi vîna xwe ya polayî wê Pêşmerge tekez DAIŞ'ê têk bibe. Erê, pêwîstiya wî bi çekên giran heye, bê pere ye, birçî ye, lê belê wê DAIŞ'ê têk bibe"

Li ser pirsa me ya sedemê derengmayîna operasyona rizgarkirina Mûsilê de jî Kekûkî da zanîn ku beriya meha remezanê Serokwezîrê Iraqê Abadî ragihandibû ku wê operasyona Mûsilê piştî remezanê destpê bike, lê belê artêşa Iraqê ne amade ye. Kerkûkî got: "Frokeyên hêzên hevpeyman li derdora Mûsilê û bi taybetî jî li mintiqaya navbera Mûsil û Hawîceyê, li dij baregehên DAIŞ'ê, êrîşên hewayî berdewam dikin. Lineyeke hevbeş a ku ji berpirsên leşkerî yên Hêzên Pêşmerge, Artêşa Iraqê û Hêzên Hevpeyman pêk tê, di derbarê operasyonê de xebatan dimeşîne. Lê belê Pêşmerge ji mêj ve amade ye û serkirdayetiya RHK'ê kîngê ferman bide wê Pêşmerge li gor wê fermanê tevbigere"

### Di eniyên Pêşmerge de feylesofek

Feylezof û Entellektuelê Frensî Bernard Henri-Levy ku bi kurteya BHL tê nasîn û di cîhana entellektueliya Ewropayê de gellek caran bi raman û bizavên xwe yên awarte tê rojevê hate Başûrê Kurdistanê û di eniyên şer ên li dij DAIŞ'ê de bi Pêşmerge re wêneyan kêşa. BHL'yê ku bi serdanên xwe yên herêmên şer ên gellek aliyên dinyayê tê nasîn, li eniyên şer ên Mûsil, Hewlêr û Kerkûkê wêneyên ku bi Pêşmergeyan re kêşa bi ser hesabê xwe yê Twitter'ê parve kir. Di van wêneyên ku parvekirî ye de BHL di wêneyekî de ji Fermandarê Pêşmerge Şîrwan Barzanî agahiyên şer guhdarî dike, di wêneyekî din de bi leşkerên jin re dimeşe û di yê din de jî di eniyeke Kerkûkê de li pişt Pêşmergeyê ku şer dike rawestiya ye û şer temaşe dike.

BHL'yê ku beriya niha li Bosna, Ûkrayna, Lîbya, Tûnis û Çeçenistanê jî çûbû eniyên şer û wêneyan kêşabû, bi wêneyên xwe yên bi Pêşmergeyan, di medyaya civakî de bi ser kolajan bû cihê tinazan. BHL roja ku van wêneyan parve kir her wiha di Govara Le Point a Frensî de gotarekê bi sernavê; 'Wê DAIŞ çima têk biçe' jî weşand. BHL di gotarê de amaje bi Hovîtiya cîhadperestan kirî ye û gotiye: "Ew terorîstên serkeftî ne lê leşkerên bêkêr in"



## Pêdiviya Pêşmerge bi çekên giran heye

Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya RHK Mesrûr Barzanî ragihand ku pêdiviya herî mezin a Hêzên Pêşmerge çekên gran û alavên leşkerî ne. Di hevpeyvîna li gel kanala BBC'yê de Mesrûr Barzanî da zanîn ku herî dawî 4 meh berê alîkariya çek û teqemenî ji Pêşmerge re hatiye û di destê Hêzên Pêşmerge de çekên mezin tune ne. Barzanî got: "Hikûmeta Bexdayê budceya RHK'ê naşîne û ji ber vê yekê RHK'ê di derbarê dabînkirina çekên gran de zehmetiyên mezin dikêşîne û ev yek bandoreke neyênî li ser şerê li dij DAIŞ'ê dike" Mesrûr Barzanî, di şerê li dij DAIŞ'ê de pêdiviya çekên gran destnîşan kir û da zanîn demek berê Almanya ji bo Pêşmerge mûşekên Mîlan ên antî-tang şandine lê belê ji bilî van çekan nêzîkî 4 mehan e Hêzên Pêşmerge tu alîkariyeke leşkerî wernegirtiye. Barzanî grîngiya çekên wek mûşekên Mîlan destnîşan kir û got: "Hêzên Pêşmerge, di dirêjahiya 1000 kîlometreyî de li hember rêxistineke têra xwe tûndrew ku di dest de gellek çekên giran û cebilxane hene şer dike. Ji ber vê yekê tenê alîkariya mûşekên antî-tang têr nake û pêdivî pêdivî bi tangan heye" Di derbarê li dij Pêşmerge bikaranîna çekên kîmyewî de jî Barzanî da zanîn ku bi 10 hezaran Pêşmerge di bin gefa çeken kîmyewî û tenê bi 1000 maskên gazê şer dikin û got: "Pêdiviya Pêşmerge bi êlekên gule derbas nakin û maskên ku li dij êrîşên kîmyewî Pêşmerge biparêze heye"

Ji alî din ve Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî, li Hewlêrê Şandeya Dadgeha Cezayê ya Navneteweyî(CUK) ku ji bo komkujiyên ku DAIŞ'ê li dij kurdên ezdî pêk hanî lêbikolin hatibûn Herêma Kurdistanê qebûl kir. Li ser navê şandeyê Serokê Şandeyê Dozger Luis Moreno Ocampo anî ziman ku ew ji destpêkê ve şer û komkujiyê dişopînin û sedemê hatina wan a Herêma Kurdistanê ew e ku komkujiyên DAIŞ'ê li dij ezdiyan pêk haniye lebikolin û ji dinyayê re ragihînin. Mesrur Barzanî jî ji ber vê helwesta wan spasiyên xwe pêşkêşî şandeyê û CUK'ê kir û got: "Tofana ku hate serê gelê me yê ezdî 'Jenosid' e û em dixwazin ku ev wisa bê qebûlkirin. Ezdî di dîrokê de gellek caran rastî komkujiyan hatine û bi dagirtina Şengalê re careke din bi vê tofanê re rû bi rû mane. Ev pêkanîn jenosîd e û divê hemû dinya vê bizanibe û li gor vê rastiyê nêzîkî meseleyê bibe"

## "Bila siyasiyên dervayî hikûmetê jî beşdarbin"

Ji ber ku ji civîna 6 'an a 5 partiyên siyasî ya ji bo çareserkirina qeyrana serokatiya Herêma Kurdistanê jî tu encam derneket Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ket dewrê û li ofisa xwe ya Pîrmamê sekreter û serkirdeyên 5 partiyên siyasî re civînekê pêk anî. Di vê civîna ku li ser heft xalan biryarên hevbeş hatin stendin de Barzanî banga diyalogê li partiyên siyasî kir û xwest ku ji bilî partiyên parlamenê, bila partiyên derveyê hikûmet û parlamenê jî beşdarî civînan bibin. Barzanî amaje bi wê yekê jî kir ku hewcedarî bi wê yekê heye ku partî û fraksiyonên din jî bedşarî pêvajoyê bibin û ew jî di derbarê kêşeyê de nerînan bînin ziman. Barzanî wiha berdewam kir: " Bi taybetî di mijareke weke serokatiya RHK'ê de divê ew jî fikrên xwe bînin ziman. Ev ji bo min gelekî giring e." Her wiha li gor daxuyaniya Serokatiya RHK'ê di vê civîna ku li ser 7 xalên hevbeş biryardarî hatiye stendin de pêwîstiya yekîtiya neteweyî jî hatiye nirxandin. Ev xalên hevbeş grîngiya di derbarê rêyên çareseriyê yên ji bo qeyrana serokatiyê, rûdanên li herêmê yên leşkerî û siyasî û egera xetereyên li ser RHK'ê mîsoger dikin. Her wiha hatiye eşkerekirin ku divê qeyran li gor berjewendiyên neteweyî bê çareserkirin û aliyên siyasî jî bi erka xwe ya dîrokî tevbigerin.

Li hêla din Barzanî spasdarî li Serokê Partiya Demokrata Sosyalîst a Kurdistanê (PDSK) Hemê Hecî Mahmûd kir. Her wiha Hemê Hecî Mehmûd li eniya Kerkûkê weke Fermandar beşdarî şerê li hember DAIŞ'ê jû bûye û ev demeke dirêje di rojeva kurdan de cih digre. Hemê Hecî Mehmûd bang li partiyên siyasî dike ku qeyrana Serkokatiya RHK'ê çareser bikin. Barzanî bi Mehmûd jî re civiya û spasdarî li Mehmdûd kir.

## Rojava vala dibe

# Kurd li rêyan dimirin!

Mehmet Salih Batırhan

**Rojava bi êrîşên DAIŞ'ê re zivirî warekî wêrankirî û bi taybetî Kobanê, hemû navçe û bajar ji cihên ku mirov karibe li bijî hatin derxistin. Herwiha vê carê jî nebûna yekitî û nêzikahiya PYD'ê ya tund dibe sedem ku Rojava vala bibe.**



Trajediya kurdan a ku di serdema 21. de bi destê DAIŞ û komên din ên tundirew didome gihîşt asteke tirsnak ya ku cîhanê mat dihêle. Piştî ku DAIŞ'ê berê xwe da Kurdistanê û bi taybetî jî li Rojava wehşeteke bêhempa belavkir, hemû bajar û navçeyên herêmê zivîrin qada heşermeşerê. Herwiha di heman demê de PYD ya ku li Rojava xweserî ragihand û kanton avakir jî êdî nikare çareyekê ji gel re bibîne da ku rê li ber koçberiyê bê girtin. Bi taybetî nêzikahiya PYD ya ku nahêle tu partî an hêzeke din daxîlî Rojava bibe û gelek sedemên din dihêlin ku bi sed hezeran Rojavayî li ser rê û dirbên koçberî û nediyariyê telef bibin. Birçîbûn, bê avî, şer û niha jî leşkeriya neçarî ya ku PYD ferz dike sedemên valabûna Rojava ne. Herwiha tevî ku heza wan ji çareseriyê re nîn e li hêla din nahêlin ku partiyên din ên kurd li Rojava kar bikin jî, PYD bahgawaziyên ecêb dike. Rêvebirên kantonan bang li Ewropa dikin da ku rê li ber koçberan bigirin. Hinek ji wan jî çapemenî û raya giştî sûcdar dikin da ku rewşa awareyan mezintir dikin û hejmarê mezin dikin. Li gor zanyariyan hejmara koçberan ên ku ji Rojava direvin gihîştiye asteke tirsnak. Herî dawî Alan Kurdî zarokê ku li qiraxa behra Ege'yê jiyana xwe jidest da dinya hêjand û careke dî rewşa awarte ya Rojava rakişand çavên hemû derûdoran.

Koçberiya ref bi ref a kurdên Rojava gihiştiye qonaxeke nû. Li gor zanyariyên Rêveberiya Herêma Kurdistanê zêdetir ji 300 hezar kes ji sînorên Sêmalka derbasî Başûrê Kurdistanê bûne û li kampan hatine bi cihkirin. Her wiha tê zanîn ku zêdetir ji 400 hezar kes jî derbasî Bakurê Kurdistanê bûne û bi hezaran kes jî derbasî Lûbnan û Ewropa'yê bûne. Rojavaya ku bi şerê Kobanê ket rojeve raya giştî ya cihanê niha jî bi koçberî û valabûnê di rojeva cihanê de ye. Niha jî hemû dezgehên medyayî berê xwe dane şopa rêyên kurdên Rojava yên ber bi koçberiyê. Xelkê Rojava yên beriya niha bi çar salan ji ber êrîşên komên çekdar berê xwe dan Bakur û Başûrê Kurdistanê niha jî hewld didin ber bi Ewropa'yê ve herin. Her wiha awareyên Rojava niha derbasî Mecerîstan, Yewnanîstan, Bulgarîstan û bajarên deryayî yên Tirkiye'yê bûne da ku xwe bigihînin Elmanya û Îngîltere'yê.

Rêya felatê ya penaberan gelek caran bi karesatan bi dawî dibe û xewn û xeyalên wan ê rizgariyê bi dawî dibin. Keştî û kelekên wan gelek caran noqî bine bahre dibin û difetisin. Her wiha yan di hûndirê TIR û kamyonan de difetisin. Ji nav dîmenê vê karesatê dîmenê herî dawî belav bû yê kurekî sê salî yê Alan Kurdî bû. Alan Kurdî û malbata xwe ji ber êrîşên DAIŞ'ê yên ser Kobanê hatibûn Bakurê Kurdistanê û li wir bi cih bibûn. Piştî wêranbûna gundê wan û kavilbûna Kobanê malbata Alan jî biryar stendibû ku derbasî Ewropa'yê bibin. Xewna Alan û malbata wî pêk nehat û rêwîtiya wan a li bajarokê Bodrûmê dest pê kir di nava deryayê de bi dawî bû. Di encama noqbûna keleka wan de Alan û birayê xwe Xalip û dayika xwe Reyhan tûşî binê derayê bûn û fetisin.

Bi krîza Sûriye'yê û pevçûnên li Heleb û Şamê yên di navbera rejimê û dijberan de bûn sedem ku kurdên li Şamê û Helebê ji wir derkevin û berê xwe bidin bajarê Efrînê. Nêzîkî 200 hezar kurdên li Taxa Şêx Meqsûd a Helebê û kurdên Şamê koçberî Lûbnan û bajarê Efrînê yê kurdan bûn. Her wiha piştî derbasbûna şer a nav bajarê kurdan û ambargoya li ser Efrînê bû sedem ku kurdên koçberî Efrînê bûne dîsa ji xwe re rêyekê bibinin û dest bi koçberiyê bikin. Her wiha xelkê kurd ê ku malen wanên li Heleb û Şamê wêran bûn û li Efrînê jî negihiştin aramiyê ber bi Kobanê û Qamişlo û navçeyên wê ve hatin. Lê belê hêzên tûndrew ew bajarên kurdan jî ji xwe re kirin armanc û di nava rojekê de 400 hezar kes ji Kobanê ber bi bajarê Pirsûsê yê Bakurê Kurdistanê ve hatin û bi cih bûn. Li hêla din li başûr û li rojavayê bajarê Qamişlo jî şer li dar bû xelkê kurd ê derdora bajarê Qamoşlo jî berê xwe dan Başûrê Kurdistanê û li gor zanyariyan zêdetirî 300 hezar kes niha li kampên awareyan ên li Başûrê Kurdistanê ne.

Her çend ku hêzên kurd nehiştin bajarê Kobanê têkeve destê DAIŞ'ê û gelek bajarên Roajava ji destê DAIŞ'ê rizgar kirin jî nikarîbûn rê li ber penaberiya xelkê Rojava bigrin. Xelkê Rojava yê ku zêdeyî çar salan e di nava şer de ye niha jî bi polîtîkayên xwe zal kirine yên otorîteya siyasî ya kurd re rû bir û maye. Her wiha ji ber avaneûna yekîtiyeke siyasî, rewşa giran a darayî û nebûna deramedeke baş, leşkeriya neçarî, nebûna av û ceyranê dibin sedem ku xelkê Rojava terkîwelat bibin. Her çend ev dîmenê xeternak li ber çava jî be û demografiya kurdan a li Rojava hatibe guhertin jî partiya siyasî ya kurdan li ser vê meseleye ranewestiyaye û çareseriyek ji vê yekê re nedîtiye.

Yek ji sedemeke sereke ya koçberiya xelkê jî lihevnekirina partiyên siyasî ye. Rayedarên Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) û bereya partiyên siyasî TEV-DEM di wê yekê de jî bi israrin ku ewê bi Encûmena Niştimaniya Kurd (ENKS) re tiffaqê pêk neynin û ewê bi ereb aşûrî û hezên din re biryaran li ser birêvebirin û parastina Rojava bistînin. Li gel 8 hezar Pêşmergeyên Rojava ji bo derbasbûna Rojava amade bin jî PYD eşkere dike ku ewê bi tu awayî destûra wê yekê nede ku Pêşmergeyên Rojava derbasî Rojava bibin û parastina xelkê bikin. Li gel vê biryara PYD'ê li Rojava partî û rêxistinên ereb û aşûrî roj bi roj zêde dibin û sazî û dezgehên nû li Rojava vedikin. Di gel zêdebûna hejmara ereban a li Rojava Partiya Yekîtiya Sûryaniyan bi navê "Jinên Bêtnehrên" tabûrek ava kirin. Li Girêspî û Kobanê jî komên bi ser Bûrkan el Feradê ve gelek caran alên PYD'ê ji ser avahiyan rakirin û alên xwe bilindkirin. Her wiha hat zanîn ku êrîşa dawî ya li ser Kobanê jî bi destê komên bi ser wê rêxistinê ve hatibû kirin.

### Alan li Kobanê hat veşartin

Kurê bi navê Alan birayê wî Xalip û diya wî Reyhan li Kobanê hatin veşartin. Termên Alan, birayê wî Xalib û dayîka wî Reyhane yên ku li ser rêya Ewropa'yê jiyana xwe ji dest dabûn, li bajarê Kobanê yê Rojava hatin veşartin. Bavê Alan (Ebdullah) û rêveberên Kobanê, endam û nûnerên ENKS'ê her wiha nûnerên partiyên siyasî yên Bakurê Kurdistanê jî di merasîmê de amade bûn. Alan û dayîk û birayê xwe weka şehîd hatin dîtin û li Goristana Şehîdan hatin veşartin.

### Rojava dorpêçkirî ye

Endamê Polîtbûroya Partiya Demokarata Kurdistanê li Sûriyê (PDKS) Mihemed





**Herî dawî Alan Kurdî yê 3 salî ku li qiraxên Behra Ege'yê jiyana xwe ji dest da raya giştî ya cîhanê hêjand û bala cîhanê vê carê bi mebesta koçkirinê zivirî ser Rojava. Li gor zanyariyên ku ji Rojava belav dibin êdî meriv dikare bi mixabinî bibêje ku Rojava 'ne welatê kurdan' e. Ji ber ku hemû bajar û navçe li ber valabûnê ne û li cihê wan careke din ereb, aşûrî û kêmnetewên din bicîh dibin.**

Îsmaîl li ser rûdanên dawî yên li Rojava û koçberiya xelkê Rojava agahî da BasNûçe'yê û rewşa xeternak a guherîna demografiyê şîrovekir. Îsmail eşkere kir ku zêdeyî çar sala ye li Rojava şer heye û xelk ji ber şer gelekî aciz e. Her wiha Îsmail daxuyand ku xurek û av jî li Rojava nemaye û metirsî li ser jiyana xelkê çêbûye û xelk ji bo xwe rizgar bike ji Rojava derdikeve. Her wiha Îsmail amaje bi wê yekê jî kir ku Rojava hatiye dorpêçkirin û rê tuneye ku xelk ji xwe re nan û avê peyda bikin. Îsmail da zanîn ku DAIŞ'ê ji hêla başûr dorûbera Rojava xistiye destê xwe û peywendiya Rojava bi deverên din re nemaye û Rojava di bin ambargoyê de ye.

### Çar meclis çar hêzên çekdar!

Di berdewamiya axaftina xwe de Mihemed Îsmail da zanîn ku deriyê Sêmalka yê di navbera Başûr û Rojavayê Kurdistanê de vekiriye û xelkê ku tên dikarin pêdiviyên xwe dabîn bikin lê bele têra wan nake û ji ber fikara siberojê xelk ji bajarên xwe derdikevin û dixwazin herin devereke aram û li wir bijîn. Her wiha Îsmail amaje bi wê yekê jî kir ku xelkê ku li Rojava maye jî bi fişara PYD'ê re rû bir û dimînin û PYD bi darê zorê bacê ji xelkê distîne û leşkeriya neçarî jî li ser ciwanan ferz dike. Her wiha Îsmail da zanîn ku li Rojava çar rejim avabûne û xelk nema dizane bê ka ewê çi bikin. Îsmaîl wiha berdewam kir; "Niha çar rejim hene. Meclîsa Sotoro, Meclîsa PYD'ê Rejima Esad, Meclîsa Ereban a bi navê Dîfax el Wetenî, xelk nema dizane bê ka ew ê çi bike. Çekdarên her çar hêza jî hene. Xelk ditirse bê ka sibe dusibe ewê çi bibe. Xelkê Rojava derdikeve û xelkê ereb tê li şûna kurdan bi cih dibe. Xelkê ereb ê Reqqa'yê, Deyrazorê tê li Rojava bi cih dibe û demografî guheriye. Pirr mixabin kurd li Rojava nemane.

### Mesûd Barzanî di dewrê de ye

Her wiha Îsmail li ser çalakiya ENKS'ê ya ji bo rawestandina koçberiyê û valabûna Rojava jî rawestiya û daxuyand ku ewê ENKS li her nûnertiya xwe mang girtinê bike û ewê bala kurdan û raya giştî ya cihanê jî bikşîne ser wê meseleyê. Her wiha Îsmail bal kişand ser helwest û daxuyaniya Serokê Herêma Kurdistanê ya ji bo Alan Kurdî jî û eşkere kir ku Mesûd Barzanî hewl dide ku çareseriyekê ji vê meseleye re bibine da ku kurd ji welatê xwe dernekevin. Her wiha Îsmail amaje bi wê yekê jî kir ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî tu ferqê naxe navbera Başûrê Kurdistanê û Rojavayê Kurdistanê û wî gelekî alîkarî kiriye û ewê di alikariyê de berdewam be.

### "Divê Ewropa deriyan bigre"

Wezîre Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo jî li ser sedemên valabûna Rojava û koçberiya xelkê mirina zarokan a li deryayan rawestiya û ji BasNûçe'yê re axivî. Îbrahîm Kurdo eşkere kir ku divê dezgehên navdewletî, saziyên medenî yên navdewletî alikariya wan bikin da ku karibin xelkê Rojava li Rojava bidin sekinandin û rê li ber çûna wan bigrin. Her wiha Kurdo da zanîn ku weke Rêveberiya Xweseriya Demokratîk wan gelekî hewl da ye ku pêdawîstiyên xelkê çareser bikin lê belê ji ber şer derfetê wan jî tünene û xelk ji şer aciz bûye. Di berdewamiya axaftina xwe de Kurdo bang li NY'ê jî kir û wiha berdewam kir; "Banga me ew e ku ne deriyên xwe dile xwe ji kurdan re vekin. Alikariyê bişînin ji Rojava re. Çûna xelkê ya Ewropa ne di cih de ye. Divê em xelkê li Rojava bi cih bikin."

### Banga çareseriyê

Kurdo li ser pirsa me ya "Gelo ereb di şûna kurdan de li Rojava bi cih bûne?" jî wiha bersivand:" Ji despêka krîza Sûriyê'yê ve me deriyê xwe ji hemû xelkê Sûriyê'yê re vekiriye. Em ji wan re dibêjin "werin deriyê me ji we re vekiriye" em bi hev re li hember DAIŞ'ê şer dikin. Lê belê di dirêjahiya demê de ewê metirsî çêbibe li ser Rojava." Kurdo amaje bi wê yekê jî kir ku divê hemû partiyên siyasî yên kurd li ser koçberiyê rawestin û rê li ber koçberiya Rojava bigrin. Her wiha Kurdo daxuyand ku divê partiyên siyasî yên kurd demildest li hev kom bibin û çareyekê ji vê rewşê re peyda bikin. Kurdo axaftina xwe wiha bi dawî kir; "Çi partiyên Başûrê Kurdistanê çi yên Bakûr çi yên li Rojava, Rojhilat divê em hemû li hev kom bibin û çareseriyekê peyda bikin."



### Barzanî: Alan sembola belengaziya gelê kurd e

Serokatiya Herêma Kurdistanê di derbarê bûyera xeniqîna Alan Kurdî yê 3 salî de ku xelkê Kobanêya Rojavayê Kurdistanê ye, daxuyaniyek belav kir. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî derbarê bûyera xeniqîna Alan Kurdî û malbata wî de, ku di deryaya Spî de xeniqîne, ragihand, dîmenên cenazeyê Alan Kurdî vîjdan dihejîne û semoboleke din a rebeniya gelê kurd e. Serokatiya Herêma Kurdistanê di vê daxuyaniyê de wiha ragihand; "Wêneyê termê wî zarokê kurd ê ji Kobanî vîjdan dihejîne û semboleke din a belengaziya gelê kurd di cîhanê de ye jî."

### "Divê ciwanên kurd ji welatê xwe dernekevin"

Her wiha Serokatiya Herêma Kurdistanê ragihand; "Alan û malbata wî ku rêya bicihhiştina welatê xwe û koçberiyê girtin pêşiya xwe, nimûneya mafxwarî û wê zilmê ne ku bi dirêjiya dîrokê û di qonaxên cuda cuda de li dijî gelê kurd hatiye kirin." Di daxuyaniyê de wiha hat gotin: "Hemû cîhan berpirs e li wê yekê ku gelê Kurdistanê biparêzin û rê bi dubarebûna karesatan di jiyana mirovên kurd de bigrin." Serokatiya Herêma Kurdistanê tekez kir: "Dema wê yekê hatiye ku dawî bi awareyî, trajedî û êş û azarên gelê kurd were û kurd li ser axa xwe bi aştî û serbilindî bijîn." Di beşeke din a vê daxuyaniyê de, Serokatiya Herêma Kurdistanê daxwaz ji xortên gelê Kurdistanê kiriye ku axa xwe bi cih nehêlin. Serokatiya Herêma Kurdistanê di berdewamiya vê daxuyaniyê de daxwaza alîkariyê ji civaka navdewletî û welatên azad kir û wiha berdewam kir: "Em daxwaz ji civaka navdewletî û welatên azad dikin alîkariya wan aware û koçberan bidin ku berê xwe dane Ewropayê û bîr li wê yekê jî bê kirin ku çavkaniyên wê zilm û cudakariyê were jinavbirin, ku li dijî gelê Kurdistanê û hemû gelên belengaz ên cîhanê tê kirin."

### "Hejmarên tên eşkerekirin ne rast in"

Hevserokê Meclîsa Zagonsaz a Cezîrê Ekrem Hiso jî ji li ser koçberiya xelkê Qamişlo rawestiya û ji Basnûçe'yê re axivî. Hiso eşkere kir ku Rêveberiya Xweseriya Demokratîk hewl dide ku koçberiyê bi dawî bike derfetan ava bike da ku xelkê Rojava vegerin lê belê ji ber şer û pevçûnan destê wan jî hatiye girêdan û nikarin çareyekê peyda bikin. Hiso daxuyand ku medya li ser koçberiya xelkê Rojava gelekî radiweste û zanyariyên ne rast jş belav dike. Hiso amaje bi wê yekê jî kir ku gelek dezgehên medyayê belav dikin ku ji ber leşkeriya neçar xelkê Hasekê û Qamişlo koçber dibin lê ew ne rast e û hejmara koçberan a tê eşkere kirin jî derew e. Her wiha Hiso amaje bi wê yekê jî kir ku ewê çareseriyê ji koçberiyê peda bikin û ewê nehêlin ku Rojava vala bibe. Di berdewamiya axaftina xwe de Hiso bicihbûna ereb û aşûriyan a li Rojava jî weke îddîa bi nav kir û tekez kir ku xelkê kurd ereb aşûrî bi hevre li hember DAIŞ'ê şer dikin û bi hevre li dijîn û tu xetere tuneye.

### Wesayîta wezîr hat gulebarankirin

Li hêla din êrîş û serkutiyên PYD'ê yên li ser nûner û endamên ENKS'ê jî berdewam dikin. Di 4'ê mehê de êrîş li Wezîrê Çandiniyê yê Kobaniyê hat kirin û di encamê de hevjîn û keçeke wezîr birîndar bûn. Li gor agahiyên hatine stendin di 4'ê îlonê de Wezîrê Çandiniyê yê Kantona Kobanê yê Rojavayê Kurdistanê rastî êrişeke çekdarî hat. Li xala kontrolê ya Hêzên Aayişê li gundê Minazê yê Kobanê endamekî Asayişa Kantona Kobanê bi gule êrişî otomobîla Wezîrê Çandiniyê yê Mahmûd Bozan kir. Mehmûd Bozan Sekreterê PDKS'yê li Kobanê. Her wiha hat ragihandin ku di encama êrişî de hevjîna Mahmûd Bozan û keçeke wî ku di nav otomobîlê de bûn, birîndar bûne. Hat zanîn ku guleyek li hevjîna wî û guleyek jî li keça wezîr ketiye. Herdu birîndarên ji malbata Wezîrê Çandiniyê yê Kobanê bo nexweşxaneyên navçeya Pirsûs a Bakurê Kurdistanê hatin vuguhastin. Li gor agahiyên herî dawî hat zanîn ku her du birîndar ji nexweşxaneyên Pirsûsê ve bo nexweşxaneyên bajarê Rihaya Bakurê Kurdistanê hatine veguhestin û li wir tên dermankirin.

Siwar Bedirxan

# Pêşmergeyên Rojhilat berê xwe didin Îranê

Hizba Demokarat a Kurdistan (HDK) ku di sala 2006'an de li Rojhilatê Kurdistanê ava bû di her qonaxê de xwe ji parastina xelkê kurd ê ji Rojhilat re amade dikir niha jî piştî êrîşên Îranê yên ser xelkê û bidarvekirina gêncên kurd Pêşmergeyên xwe şandin ser sînorên Rojhilat û Başûrê Kurdistanê. Her wiha hat zanîn ku li Serdeştê beriya bi çend rojan di navbera Pêşmergeyên HDK'ê û pasdarên Îranê de şer derketiye. Demeke dirêje Îran çiyayên Rojhilatê Kurdistanê dide ber topan û daristanên Rojhilat dişewitîne. Li hêla din li gel sûtandina daristanan û topbarana çiyayan, Îranê dîsa dest bi sêdarekirina gêncên kurd jî kiriye. Beriya bi çend rojan gencekî kurd ê bi navê Behrûz Alxan ji hêla Rejima Komara Îslamî ve hat darvekirin.

## Polîtîkayên Îranê yên li ser Kurdistanê

Di kongreya asayî ya 2006'an a Partiya Demokrata Kurdistana Îranê'de çend êvebirên PDKÎ'yê ji partiye veqetiyan û bi navê HDK partiyek ava kirin. Ji roja avabûnê ve heta niha Pêşmergeyên HDK li ser sînorên Rojhilat û Başûrê Kurdistanê bi cih bûne û li hember êrîşên Îranê radiwestin. Hemû partiyên Rojhilatê Kurdistanê li Başûrê Kurdistanê ne û li wir bi cih bûne. Demeke dirêjê Îran bi destêwerdanan dixwaze hem li Başûrê Kurdistanê û hem jî li Bakûrê Kurdistanê bibe xwedî hêz û ji ser qadroyên partiyên kurd xwe li Kurdistanê bi cih bike. Li hêla din Îran kuştina kurdan a li Rojhilat jî didomîne. Li gor îstatîstik û zanyariyan her ji du rojan kolberekî kurd ji hêla pasdarên Îranê ve tê kuştin. Her wiha madedeyên hoşber li Rojhilatê Kurdistanê li nav gêncan tê belavkirin da ku cemiyeta kurd tûşî xirabiyan jî bibe. Partiyên Rojhilatê Kurdistanê Komele, PDKÎ, HDK, PAK, PJAK li hember van êrîş û serkutiyên Îranê radiwestin û gelek caran di navbera wan de pevçûn derdikeve.

## Destêwerdanên Îranê yên li Rojhilata Navîn

Bi destpêkirina qonxaeke nû ya li Rojhilata Navîn û şerê mezhebî bû sedem ku nûnerên welatên sunne û welatên şîe li welatên cîran dest bi destêwerdanan bikin û xwe li ser herêmê zal bikin. Komara Îslamî ya Îranê ku nûnerê Misilmanên şîe mezhebe dest bi polîtîkayên nû dike û li hemû welatên Rojhilata Navîn xwedî peyv e. Li gor tehlîlgerên siyasî, Bexda, Şam, Sana, Beyrût ji Tehranê tên birêvebirin. Her wiha li Iraqê bi piştevaniya Îranê ji milîşeyên şîe hêzeke leşkerî ya bi navê Haşdî Şabî hatiye avakirin û ew hêza leşkeri weke sîberekê li ser serê siyaseta Iraqê ye. Li hêla din li Lûbnanê Hizbûllah di bin kontrola Îranê de ye û ji hêla Îranê ve tê bi rêvebirin. Her wiha di krîza Sûriye'yê de jî Îran piştevaniya Esad dike û eşkere dike ku ew dê nehêlê Esad têk biçe. Tê zanîn ku heta niha zêdetir ji 5 hezar leşkerên Îranê di krîza Sûriye'yê de li Sûriyê di nav artêşa bi ser rejimê ve şer kirine û di şer de hatine kuştin. Li hêla din li Yemenê jî koma şîê mezheb a Hûşî li hember koma sune mezheb a li Yemenê dest bi êrîşan kir û di encamê de Hûşîyan desthilatdarî bi dest xistin.

Komara Îslamî ya Îranê li gel wan destêwerdanên li welatan li hember kurdên Rojhilat jî dest bi komkujiyan dike. Her çend Serokkomarê Îranê Hesen Rûhanî serdana Parêzgeha Kurdistanê kiribe û hin qewl jî dabin ku ewê êdî mafê kurdan bêne parastin û zimanê kurdan di zanko û dibistanan de bê parastin jî komkujî, êrîş sêdadarkirina gêncan berdewam dike. Partiyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê, PDKÎ û HDK'ê beriya bi çend mehan biryara wê yekê dabûn ku ewê êdî baregehên xwe yên leşkerî li ser sînorê Rojhilatê Kurdistanê û Başûrê Kurdistanê dînin û ewê bersiva êrîşên Îranê yên li ser kurdan bidin. Herî dawî Pêşmergeyên HDK'ê li sînorê Serdeştê li hember pasdarên Îranê çalakiyek li dar xistin û li gor zanyariyan zêdetir ji 5 pasdarên Îranê hatin kuştin.

## "Îran totolîter e"

Rojnameger Tahir Hasanî li ser rûdanên dawî, çalakiyên partiyên siyasî û êrîşên Îranê yên li ser xelkê Rojhilat agahî dan BasNûçe'yê û rewşa dawî şîrove kir. Hasanî amaje bi wê yekê kir ku Îran weke welatekî totaliter tevdigere û bi tu awayî mafê kurdan nas nake. Her wiha Hasanî bal kişand ser xelkê li Îranê jî dijîn û wiha berdewam kir; "Xelkê Sune mezheb, kurd, belûc, hemû di bin pêkûtiyên Îranê de ne. Komara Îslamî mezheba şîetiyê li ser xelkê ferz dike. Armnaca wê ewe ku hemû kes bibin şîê mezheb û li gor îtîqada wê mezhebe bijîn." Hasanî her wiha eşkere kir ku temenê rejima Îslamî zêdetirî 30 saliyê û ewê ew rejim 30 salê din nebîne û birûxe.

**Peşmerge'yên partiyên Rojhilat ew demeke ku baregehên xwe li sînorê Rojhilat û Başûr lê dikin û pêyamên ku ewê şerê Îranê bikin radigihînin. Beriya demekê PDKÎ'yê bi mebesta 70. salvegera xwe diyar kiribû ku wê êdî berê xwe bidin Rojhilat. Herwiha HDK'ê jî heman biryar stend û berê Peşmergeyên HDK'ê li Rojhilat e.**

## Pêşmerge li ser sînorê Rojhilat û Başûr in

Li hêla din Hasanî amaje bi wê yekê jî kir ku partiyên siyasî yên kurd parastina xelkê kurd ê li Rojhilatê Kurdistanê weke erka xwe dizanin û çûna wan a ser çiyan morale xelkê jî bilind dike û tesîreke mezin jî li xelkê Rojhilatê Kurdistanê dike. Her wiha Hasanî eşkere kir ku hem Pêşmergeyên PDKÎ'yê û hem jî yên HDK'ê li ser sînorên Başûr û Rojhilatê Kurdistanê ne û wan biryara wê yekê stendiye ku bersiva êrîşên Îranê bidin. Hasanî, li ser pevçûna dawî ya di navbera Pêşmergeyên HDK û Îranê qewimî bû rawestiya û wiha got; "Pêşmergeyên HDK'ê li ser sînor in, ev demeke dirêje Îran êrîşî ser xelkê çiyayên Kurdistanê dike. Daristanan dide ber agir. Dîsa dest bi darvekirina gêncan dike. Pêşmerge êdî vê yekê qebûl nakin. Êrîşên ser xwe qebûl nakin û bersiva van êrîşan didin."

Li gel çalakiyên HDK'ê Pêşmergeyên PDKÎ'yê jî dest bi çalakiyan kirine û baregehên xwe li Kelaşînê danîne. Her wiha beriya bi hefteyekî PDKÎ'yê 70 saliya partiyê pîroz kir û di wê merasîmê de sekreter û Pêmergeyên PDKÎ'yê jî eşkere kirin ku ewê li mîrata Qazî Mihemed û Melle Mistefa Barzanî xwedî derkevin û ewê ji bo parastina xelkê Rojhilatê Kurdistanê dest bi çalakiyan bikin.



Selam Abdula:

# Stûnnûsî di bin nîrê siyasetê de ye

Kalê Badî

Îro, di çapemeniya cîhanê de stûnnûsî hêmaneke bingehîn a rojnamegeriyê ye ku dikare bandorê li ser siyaset, aborî, civak, çand û hunerê bike û carcaran dikare bibe sedem ku polîtîkayên li ser van hêmanan biguhere. Bêguman di govar û rojnameyên kurdî de, ev şêwe rojnamegerî niha di asteke diyarde de ye, lê belê li gel dezgehên ragihandinê, stûnnûs jî ji rewşa neyênî ya rojnamegeriya kurd bandor werdigirin.

## 'Çapemenî bê belge rexne dike'

Ji bo em ast, derfetdarî û hêza stûnnûsiya çapemeniya Başûrê Kurdistanê têbigihîjin me bi Sernûserê Rojnameya Xebatê Selam Abdula re dîdariyekê kir. Abdullah diyar kir ku bi başî û nebaşiya xwe pirsgirêkên ku bi giştî çapemeniya Başûr pê re rûbirû ye ji pirsgirêkên stûnnûsan cudatir nînin û dabeşbûyîna dezgehên ragihandinê ya di navbera aliyên siyasî de bi giştî çapemeniyê sînordar dike û nahêle ku ramana azad bigeşe. Abdula ragihand ku stûnnûsiya Başûr li gor ya cîhanê û bi taybet li gor ya welatên pêşketî di asteke baş de nebe jî bandorek wê ya diyarker roj bi roj gelempertir dibe û got: "Xurtbûna stûnnûsan, bi rewşa çapemeyê ve têkildar e. Niha rojnamegerî di bin nîrê polîtê de ye û ji ber ku ew jî hêmaneke grîng a rojnamegeriyê ye sitûnnûsî jî di bin nîrê polîtê de ye"

Selam Abdula rexnegîriyê yek ji esasên pêşketina rojnamegeriyê hesiband û da zanîn ku li gor 10 salên pêş, di çapemeniya Başûr de jî rexnegîrî bi pêş ketiye û êdî rojnameger dikarin kes, dezgeh, şirketên mezin û siyasiyan rexne bikin. Abdula got: "Lê belê li Başûr, ji ber ku rojnamegerî bi şêweyên gerdûnî yên rojnamegeriyê hîna nû hesiyaye, rexnegîriya çapemeniyê bêtir li ser nebiyan pêk tê. Rexnegîrî di asteke baş de tê kirin, lê belê bê belge têne kirin. Ji ber ku hê jî bandora siyasî ya li ser ragihandinê pir e, rojnameger bi helwestên bîrdozî tevdigerin û grîngiyê nadin belge û piştrastkirina rexnegîriyê. Wek nimûne; Niha li Başûr qeyrana siyasî ya Serokatiya Herêmê heye. Ji ber van sedemên ku min qala wan kir çapemenî jî bi hêzên polîtîk ve grêdayî dabeş bûye. Ev yek gelê Başûr bêzar dike û ji ber vê yekê jî êdî gel baweriya xwe bi çapemeniyê nayîne"

Selam Abdula ragihand ku ji bilî dezgehên ku di bin nîrê hêzên siyasî de ne, hin dezgehên serbixwe ku ne grêdayî tu aliyekî ne jî hene, lê belê aliyên siyasî bi rikberî nêzîkî van dezgehan dibin û ew li dijî xwe dibînin. Li ser pirsa me ya pergîkirina rola rojnamegerî û stûnnûsiyê de jî Abdula, da zanîn ku wek hejmar her çiqas stûnnûs kêm bin û ew hêza wan a li dij vê sazûmanê derkevin tune be jî anî ziman ku stûnnûsî ta radeyekê ji rojnamegeriya raportî cuda ye û ne di asta ku tê hêvîkirin de be jî stûnnûs hinekî din azadtir in û rexneyên xwe bi belgeyan piştrast dikin. Abdula diyar kir ku ev rewşa çapemeniya başûr gel bêzar dike û dibe sedem ku gel bawerî bi agahiyên rast jî neyîne û got: "Ev alîgirî ji zextên hêzên siyasî bêtir bi dilniyaziya rojnamegeran tê kirin. Ez Sernûserê Rojnameya Xebatê me û Xebat organa Partiya Demokrat a Kurdistan e; Ez bi hêsanî dikarim nêrînên xwe yên şexsî bînim ziman. Hemû rojnamegerên din jî dikarin bi serbestî tevbigerin; Lê belê bi şêweyeke xwebixweyî alîgiriyeke tûnd dikin û ev yek ji siyasetê bêtir, ziyanê dide rojnamegeriyê"

**Ji perçeyên din ên Kurdistanê cudatir, li Başûrê Kurdistanê stûnnûsî hin pêşketîtir û gelempertir e. Em sedemê wê deyînin aliyekî, lê belê li Başûr jî astengî û bêderfetiyên ku ji sazûmana polîtîk peyda dibin hene.**

## 'Gelê Başûr dixwaze rastiyan hîn bibe'

Selam Abdula anî ziman ku li Başûrê Kurdistanê gel hez dike ku rastiyan hîn bibe, lê ji ber ku dizane dezgeheke ragihandinê ku bêyî alikariya aliyekî siyasi yan jî abori nikare li ser piyan bimîne, ji hemû dezgehan bi guman e. Abdula got: "Çimku dizane ku hêza aborî di dest partiyan de ye. Ji ber vê yekê bawer nake ku dezgeheke serbbixwe ava bibe. Wek nimûne; Kanala NRT her dibêje ez kanaleke serbixwe me û tu pêwendiyeke min a aborî bi partî û hikûmetê ve tune ye jî, gel bawerî pê nayîne" Abdula destnîşan kir ku yek ji sedemên vê rewşê jî ne zelaliya pêwendiyên aborî ye û dom kir: "Eger dezgehên ragihandinê di warê aboriya xwe de zelal bin wê her tişt aşkere bibe û wê diyar bibe ku kî çiqas bi ser kîjan alî de ye. Sedemên vê rewşê gellek in. Yek ji sedema herî grîng jî tunebûna bazareke modêrn e. Eger bazareke modêrn ku şirket û holên hilberîner bi ser reklaman de nasîna xwe pêk anîbûna hebûya û bazara reklamkariyê mezin bibûya, wê dezgehên ragihandinê jî bi saya dahata reklaman dikaribûya xwe ji bin nîrê hêzên siyasî û aborî rizgar bikirina.

## 'Komek fişar Sendîkaya Rojnamegeran damezirand'

Li ser, di azadbûna ragihandinê de rola Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê jî Selam Abdula da zanîn ku li hemû cîhanê sendîka ji alî ew kesên ku ezayê rojnamegeriyê dikêşînin ve tê damezirandin û ji jêr ve ber bi jor diçe, lê belê li Başûrê Kurdistanê ev yek berovajî pêk hatiye. Abdula got: "Sendîkayek rasteqîn divê ji alî rojnamegerên ku dixwazin mafê rojnamegeran biparêzin û rojnamegeriyê azad bikin bê damezirandin. Lê belê sendîkaya me ji alî komeke ku em ji wan re dibêjin 'komên fişar' hate damezirandin. Nûnerên partiyan li hev kom bûn û ew damezirandin û heta niha jî karûbarê sendîkayê ji alî wan ve tê birêvebirin. Erê rast e, rêveberiya wê bi kongreyê tê hilbijartin û wek dezgeheke demokratîk xuya dike, lê belê ji alî partiyan ve birêve diçe. Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê ji ber pêwendiya wê ya bi hikûmet û partiyan, ji bo rojnamegeran hin karên kerkeftî pêk tîne, lê belê bi şêweyê damezirandina xwe û meşandina kar û xebatên xwe ne wek sendîkayên cîhanê ye"

## 'Xebat kevntirîn rojnameya Başûr e'

Di dawiya axaftina xwe de Selam Abdula, da zanîn ku li gel ku hêzên siyasî li ser dezgehên ragihandinê zexteke mezin nakin jî dezgeh, xwe bi xwe sansor dikin û egeriya ku siyasî zextan li ser wan bikin bi tevahî ji holê radikin, ji ber vê yekê siyasî jî ji vê rewşê kêfxweş in; lewre dikarin bêjin ku me zextan li ser çapemeniyê nekirî ye. Di derbarê rojnameya Xebatê de jî Selam Abdula da zanîn ku Rojnameya Xebatê kevntirîn rojnameya Başûrê Kurdistanê ye, di Nîsana 1959'an de yekem car li Bexda derçûye û li ser siyaset û civaka raborî ya Başûrê Kurdistanê bandoreke mezin kirî ye. Abdula amaje bi rojnameya Xebatê ku organa ragihandinê ya PDK'ê ye kir û got: "Rojnameya me Xebat, her çiqas organeke partiyî be jî ji gellek dezgehên din ên ku xwe serbixwe didin nasîn azadtir û pêwendiyên wê jî zelaltir in" Abdula, qala Rojnameya Bas'ê jî kir û diyar kir ku li gel hemû awayî ji ber ku Xebat organa partiyeke siyasî ye di warê şêweyê rojnamegeriyê de ji Rojnameya Bas'ê cudatir e, lê belê Bas, rojnameyeke pir serkeftî ye.

Nivîskar Kamîz Şedadî:

# Siyaseta Rûsya ya derbarê kurdan de taktîkî ye

Zerya Nergîz

Têkiliyên Rûsya ya ku di nav hêzên super yên cihanê de cih digre, bi kurdan re her tim mijara meraqê bû ye. Bi taybetî jî di dema şerên cîhanê yên yekem û dûyem de, helwesta rayedarên rûs yên beramber Kurdistan a Sor û Komara Kurdistan ya Mahabadê de guman û rexneyên kurdan kişandiye ser xwe. Moskova di damezrandina Komara Kurdistanê li Mahabadê de rolekê ciddî leyistibû lêbelê, bûbû sedemê têkçûna vê ezmûna kurdan jî. Polîtîkayên Rûsyayê ya derbarê kurdan her tim li gor helwesta dewletên serdest yên Kurdistanê bûye. Rûsya yekem car bi kurdan re di dema şerê cîhanê ya yekem de tekiliyên fermî çêkiriye. Di dema şerê cîhanê ya duyem de jî li Îranê piştgiriya damezrandina Komara Kurdistanê li Mehabadê kiriye. Moskova îro jî bi kurdên Rojava re eleqedar e û bi Herema Kurdistanê re jî têkiliyan daniye û konsolxane ya xwe li Hewlêrê vekiriye.

Nivîskar/Rojnamevan Kamîz Şeddadî ku kurdekî Azerbaycan'ê ye û bi salên dirêj li Mossko-va'yê di derbarê kurd û rûsan de analîzan nivîsandiye di derbarê têkiliyên herdû aliyan de ber-siva pirsên BasNûçe'yê da û diyarkir ku heta niha siyaseta rûs ya beramberî kurdan taktîki ye.

## Kurd û rûsan kengê û çawa hevûdû naskirin?

Di têkiliyên kurd û rûsan de têkili ya yekem di sedsala 18'an de di şerên Rus-Îran û Osmani-yan de destpêdike. Piştê ku Rûsya dibe împaratorî, projeya xwe yê ku li Başûr hakîmê deryayan be û ji aliyê Dewleta Osmanî ve hakîmê Derya Reş be, bi kurdan re rastêhev tên. Lewma ku van herêman de û buyerên dîrokî ku piştê vî pêk hatiye de em têkiliyên rûs û kur-dan dibînin. Serhildanên kurdan de em vê temasê dibînin. Lê li gorî min ya girîng akûbeta Rûsya'yê û rola wî ya li şerê yekem a cîhanê ye. Dema ku şoreşa Rûsya'yê çêbû, Rûsya ji şer vekişî, ku wê demê Kurdistan kirin çar perçe. Di vî şerê parvekirinê de Dewleta Osmanî û Rûsya di nav îtîfaqên cûda de, di nav eniyên şer li hember hev de bûn û di nav wan her dû eniyên li hemberê hev şer dikin de jî kurd hebûn.



## Di şerê cihanê ya yekem de tekiliyên kurdan bi Rûsya'yê çawa ye?

Heta ev şerê parvekirinê de Rûsya û Osmanî li enîyên hemberê hev in. Ji xwe şerên ku di na-vbera Osmanî û Rûsan de hin eşîrên kurd, aliyên xwe diyarkiribûn. Yên ku li cem rûsan li hemberêosmaniyan û her wiha li cemosmaniyan li hemberê rûsan şer dikirin. Wek eşîrên kurd yên din û wek siwariyên Hamidiyê. Di şerê cihanê ya yekem de armanca rojavayiyan ew bû ku Osmanî yan perçe bikin û tê de pêkhatinekî nû avabikin. Osmanî têkçû û belav bû. Îngîlîzi-yan û fransiziyan dewletên girêdayî xwe avakirin. Li gorî min Rûsya ger ku li şêrê venekişiya, dê rewşa îro cûda bûya. Şoreşa Cotmehê ku vê demê pêk hat, qasek jî plana ku Rûsya'yê bêxwe der bû. Plana ku rojavayê heya Elmanya'yê serî dikişa. Êdî Rûsya, di dema şerê cîhanê ya yekem de mafê wî yê axaftinê nemabû. Ne rasteka nû da ne jî li Rojhilata Navîn û cihekê din de. Tenê Sovyet ava bû û wisa berdewam kir. Lê belê li gorê peymana Sevrê nexşeya piştê şerê, eyaletên Kurdistan a baqur tê de cih digirt, dîsa Başûrê Kurdistan de bajarên Misûl û Kerkûk jî tê de ye, didin Kurdistanê. Lê belê Komara Tirkiye'yê ku tê îlankirin, şert û merc digûherin û diçin Peymana Lozanê. Û li wir jî şert û mercên berî li holê tê rakirin û Kurdistan dikin çar perçe. Nexşe şiklê xwe yê îro digire. Piştre temasa kurd û rus an şerê duyem ya cîhanê de derdikeve holê.

## Hûn tevlê nêrînên ku şerên cîhanê yên yekem û duyem de kurd hevalben-dên Rûsya'yê yê herê mezin li Rojhilata Navîn bû, dibin? Polîtikaya kurdan beramberî Rûsya'yê hebû?

Piştê şerê cîhanê ya yekem de cîhan ji nûh ve hat parvekirin. Ji ber vê sedemê 'şerê parveki-rinê' tê gotin. Rusyê wê wextê di nav sînorên împaratoriyê de ma û pay negirt. Giştiyê Rojhi-lata Navîn, bû dewletên girêdayê serketiyên şer ê. Ji ber vê sedemê, şerê cîhanê ya yekem de hevalbendiya kurd û rûsan nîne. Lewra tevgerekê kurd yê ciddî tûnebû. Piştê şerê li Îran'ê Tevgera Simko heye. Li Tirkiye'yê Serhildana Şêx Saît heye. Têkiliya Rûsya'yê bi van re nî-ne. Heta berevajî Komara Atatûrk, ji ber sedema ku li hemberê rojavayiyan şer dike û li dij emperyalîzmê ye, nêzikati di polîkayên Rûsya'yê de çêbû. Yanê ne mimkûne ku em bêjin polîkayên Rûsya'yê ji bo kurdan heye. Bi esasî tekiliya ciddî şerê cîhanê ya duyem de çêbû. Ev jî bi îlana Komara Kurdistanê ya li Mehabadê çêbû. Tekiliyên kurdan û rûsan yê herê ciddî wê demê çêbû. Lewre ku Sovyetê teşwîq kir û bixwe tevlê bû û komar hat îlankirin. Piştre jî bi sedema peymana di navbera serdestên şerê de pêkhat de Rûsya vekişî. Hema piştê vekişîna Rûsya'yê Şah êrîş kir û hikûmeta Azerbaycan û Kurdistanê tesfiye kir. Piştre Mele Mistefa Berzanî ku di avakirina Komarê de cih girtibû bi Peşmergeyên xwe re di Îraqê de li rastê êrîşên ciddî hat, çû Sovyetê. Demekê dirêj li Sovyetê dimîne. Em dikarin bêjin wê demê planekê Rûsya'yê ji bo kurdan heye.

## Planên Rûsya'yê çi bûn?

Piştê şerê yekem, metîngehên ku rojavayiyan li Rojhilata Navîn avakiribûn yek bi yek azad dibûn. Tevgerên li dij metîngeriyan destpêdikir. Misir, Îraq û bi rêzê hemû azad dibûn. Di serî de ev hemû wek alîgirên Sovyetê şoreş pêk tên. Tevgerên dij emperyalîzmê pêşvediçin. Heta dawiya salên 60'an de têkiliyên rûsan bi van dewletên ereban re û zêdetir jî destpêka rejîmêm Baasê têkiliyên xurt hebû. Bi esasî razandinên xwe yên siyasî li ser van çêdikir. Lê belê de-mek piştre li van deran rejîm guherîn û zêdetir jî alîgirên rojavayiyan desthilatdar dibûn. Yek ji van jî Îraq bû. Wê demê ku Berzani bi Permergeyên xwe re li Rûsya'yê bû, destê Rûsya xurt dibû û Rûsya li ser kurdan hesabên ciddî dikir. Planên Rûsya'yê hebû ku wan amade bike û dîsa bişîne Iraqê şoreşekê nû, heta hewce be, ji bo ku li rojhilatanavîn xweyê axaftinê be, destek bide pêkhatina Kurd. Wisa jî bû. Peşmergeyan piştê ku demekê dirêj li rastê rêçên ge-lek nebaş man, çawa ku li Îraqê şert û merc avabûn vegerîn. Heta ev piştê mirina Stalînê pêk tê. Dema Stalîn dimire û Kruşov tê guherîna siyasî dibe. Û li wir perwerdeya leşkerî didin Peşmergeyan. Û piştre bi keştiyên xwe, li ser Derya Sipî diçin Kendav a Basrayê û ji wê dirêjê Îraqê dibin.



## Rola Stalîn di ruxandina Kurdistan a Sor de tê zanîn. Heta Stalîn dimire jî nêzikatiyekê ciddi di derbarê kurdan de nîne. Sedeme helwesta Stalîn çî ye?

Rast nabe ku em vê nêzikatiya Rûsya'yê tenê ji bo kurdan binirxînin. Lewre ku kurd di nav giştî yê Sovyetê de xweyê bandorekê gelek hindik in. Tenê di nas-nameya wan de kurd dini-vîse. Heta ne wek netewekê, di kategoriya gelên kêm de tê nirxandin. Tenê di nasnameya wan de kurd dinivîse. Nêrînekî Sovyetê di derbarê meseleyên netew de heye. Vî di wextê de Lenîn xêz kirîbû. Heta vî bi Stalîn pêk di-aniya. Rexneyên Bolşevîkan yên herê cid-dî ji Rûsyaya Çarê re, xilaskirina netewan û xilaskirina çanda wan bû. Ji ber vê yekê piştê şoreşê polîtîkayekê vajî meşandin. Ji ber vê sedemê, hemû netewên di vê erdnîgarî de dijî re, him îdarî, him siyasî him jî rêvebirên çandî dan. Ji hinekan re vê vew komarê, hinekan re jî wek otonomî wan jî wek komarên otonom û herêmên otonom dan. Statûya ku didan li gor ser-jimêr û mezinbûna erdên tê de cih digirtin diguheriya. Di vê çarçovê de kurd jî him di Ermenîstanê him jî di nav Azer-baycan'ê dijîyan. Lewre pergala ku Bolşevikan nû ava kiribû de kurd xwediyê bandorekê siyasî ya ciddî nebûn. Tevgerekê wan yên netewî nînbû. Di dema Çar de jî, dema Sovyetê de jî wiha bû. Îradeyekê siyasî ku mafê kurdan biparêze û nûneriya wan bike tinebû. Ji ber vê sedemê Kurdistan a Sor ku tê behskirin, piçek hatiye mezinki-rin û tenê statuyekê di asta nav de ye. Ev herêma kurd, di nav Azerbaycan, Qerabağ û Ermenistan'ê de ye, navê Kurdistanê tê dayîn lê di makeqanûnê de cihê xwe nag-ire. Statûyekê û pergalekê îdarî nîne. Tenê hin mafên çandî hene. Ew jî di pêşerojê de li cem zimanên azeri û rusî perwerdeya zimanê kurdî jî bê dayîn. Yanê rewşekê ku kurd rêvebiriya xwe pêk bînin ango pêwendiyekê wî ku bi hikumeta navendî re be nîne. Ev nav dayîn a ku di sala 1923'an de çêbû, bi 5 navçeyên biçûk pêk tê û di sala 1929'an de ji holê tê rakirin. Navê Kurdistanê jî ne ji ber rewşa siyasî ji ber rewşa erd-nîgarî tê dayîn. Li xeynê nav em nikarin bahsa otonomiyekê an jî ji statûyekî bikin. Lê ewder wek beşeke ji erdnîgariya dîrokaî ya kurdan.

## Nêzikatiya Rûsya'yê ji Başûrê Kurdistanê re taybetî jî ku em ev deh salên dawî bi-nirxînin çawa ye?

Rûsya di Rojhilata Navîn de leqayê paşveçûneke ciddî hat. Heta hat astekî wisa ku êdî nekare bi Amerîkêyê re berevanî bike. Bi temamî ji Rojhilata Navîn hat derxistin. Xalekî ji bilî Suri-ye ku Rûsya bikare bigire nîne. Mimkûn nîne ku avabûnekî bi mudaxaleya Amerîka û bi desteka Amerîka pêk bê rola Rûsya'yê tê de hebe. Kurdistan a başûr jî bi mudaxaleya Amerîka'yê bixwe, piştê hilweşîna rejîma Saddam statûya feredasyonê meşrû bû û hat vê astê. Lewre bi mudaxaleya Amerîka bixwe derketiye holê. Ne mimkûne ku Rûsya têde rol bigire û bibe aliyekê. Rûsya bixweze têkiliyê bidane jî, ancax ev têkilî dê gelek kêm bibe. Nêzikatiya Rûsya'yê bo Başûrê Kurdistanê, para çavkaniyên xwezayî y e.

## Em dizanin ku Rûsya dewleta yekem e ku li Başûrê Kurdistanê konsolxaneya fermî ve-kir. Ku Başurê Kurdistanê dewletekê serbixwe avabe, wê Rûsya destek bide wê?

Ez bawer nakim ku raste rast nas bike. Lê belê dê di nav lîsteya destekdaran da cih bigire. Sedema ku dewleta yekem konsolxane vekiriye jî, bi temamî wenda neke ye. Niha her çiqas li wir bandoreke ciddî ne be jî, hemû dewlet di wê herêmê de ji bo pêşerojê ramedan dikin. rusî mêzi dikin. Dema ku ciddiyeta rojavayiyan li wir ji bo avabûna kurdan bibînin, dê ji bo pêşerojê bikeve pê ramedanan. Lewre ku li Iraqê rewşekê nediyar heye. Ji ber vê sedemê siyaseta Rûsya'yê ji bo Başûrê Kurdistanê, zêdetir jî ramedanên ji bo pêşerojê be. Niha mêze dike û dixwaze encaman bibîne. Nêzikatiya wî, ezê li vir bibim, konsolxaneya xwe vekim, heta ku îmkan hebe ji bo derxistina çavkaniyên xwezayî, bazarî û barkirina wan de cih bigirim e. Ev ji bo Kurdistan a Bakûr wiha nîne. Ji bo Suriye'yê jî hinek paş de ye.

## Yanê em dikarin bêjin ku kurd li Rojhilata Navîn de di navbera Amerîka û Rûsya'yê de di rewşeke hassas de disekinin?

Bandora Rûsya'yê nîne. Tenê temaşevan e. Ji bilî nirxandina fersendan nikare tiştekê din bike. Hêza mudaxîl bi pêşengiya Amerîka'yê rojavaye. Yanê NATO ye. Ki ew jî hêzekî berevanê Rûsya'yê ye. Wextê Seddam de li Iraqê bandêrekî gelek ciddî yê Rûsya'yê hebû. Iraq bi te-mamî bazara Rûsya'yê yê çek bû. Li Iraqê ji em teknolojiya çavkaniyên xwezayî ya Iraqê bigi-rin heya pisporên wî hemû ji rûsan pêk dihatin. Derxistina çavkaniyên xwezayî, karsazî û ba-zariya wan de pardariyên Rusî, heta beriya wî de payê Sovyetê yê mezin tê de hebû. Lê belê piştê 2003'an de, peymanên ku bi Seddam re çêkirî bûn hemû wek sirûştî betal bûn. Belavbûnekî nû çêkirin, û Rûsya niha li Iraqê ji bo bêdengiyê tenê karsaziya çendek derên petrolê dan şirketên Rûsya'yê. Li Kurdistanê payekê ji vê biçûktir jî hildan. Armanc dîzaynekê nû bû û dixwestin çavkaniyên Rojhilata Navîn hildin destê xwe. Ji bilî wî nêzikatiyekê ku Rusîyan ji xwe re bikin hevbeş nîne.

## Kurd di polîtîkayên Rûsya'yê ya Rojhilata Navîn de li ku disekinin?

Niha polîtîkayên Rûsya'yê yê di derbarê Rojhilata Navîn de tevahî nîne. Ji bo Sûriye'yê polîkayê wî yê cûda heye. Polîtîkayekê cûda ji bo Îran heye. Polîtîkayekê wî yê cûda ji bo Iraq'ê heye. polîtîkayên wî li gor her perçe û welatê diguhere. Îran ji bo Rusya girînge. Lewre ku ambargo hebe jî, bazarekê mezin e. Ji bo rabûna ambargoyê û ji bo bikeve di nav bazarê li benda fersendê ye. Him ji bo çek, him jî ji bo karsaziyên petrolê. Ji ber vê yekê gelek girîngîdidin têkiliyên bi Îran'ê re. Dê pêşerojê de çawa be, dê dîsa têkiliyên berjewendiyê di-yarbike, lê niha tevgera kurd yê li wir de qet tekiliyê wan nîne. Li Iraqê ji, ji ber sedema bi temamî di bin kontrola Amerîka'yê de pêk dê kurdên li wir de jî têkilîyê wan tine. Rewşa Sûriye'yê li holê ye. Suriye li Rojhilata Navînde ji bo Rûsya'yê ku bigire tek rejîme. Tek re-jîme ku vekirî destek dide. Welatên wek Libya û Misirê berxwedan ne da nîşan û dest jê ber-da. Lê belê li Sûriye'yê ber xwe dide. Ji ber vê yekê nêzikatiya wî yê kurdên Sûriye'yê jî di çarçoveya têkiliyê wan bi Esad re ye.

## Belê, di denklema Rojhilata Navîn de li gor destkeftiyên kurdan, rola têkiliyên kurdan bi rusan re çî ye?

Li gor min, ji ber rolekî ciddî yê Rûsya'yê li Rojhilata Navîn de nemaye, ne mimkûne kurd jî li ser Rûsya'yê ramedan bikin û siyaset bimeşînin. Ev li Kurdistan a Rojavayê jî wiha ye. kurd çi jî bikin di encamê de aliyê Suriyeyekê nû digirin. Ev Suriyeya nû jî diyare ku dê bi Esad re nemeşe. Lewre îro Esad re şer nekin jî dê rojekê rastê hev bên. Destekdara Esad yê herê mezin jî Rûsyaye ji ber vê sedemê fikra ku Rûsya û kurd cem hev bin hinek safî dibe.

## Lê em dizanin ku têkiliyên nêzik yên Salîh Muslim bi Rûsya'yê re heye?

Ya rastî ev têkiliyekê nêzik nîne. Li gor min avabûnên kurd yên li Rojava polîtîkayekê gelek baş meşandin. Bi her aliyê re şer nekirin. Him rejîmê nekişandin ser xwe, him jî hêzên xwe belav nekirin. Serî heya niha polîtîkaya dimeşînin de dibêjin em tenê herêmê xwê diparêzin û ku bên li ser me emê bi hêzên xwe yên xweparêst ve emê şer bikin. Ev him ji bo rejîmê him jî ji bo hêzên din peyam e. Lê belê yên din êrîş kirin û li rastê berxwedanekê mezin hatin. Ji re-jîm êrîşê nake, kurd niha bi rejîmê re şer nakin. Lê ev nayê wateya ku tê wiha berdewam bike. Sibê ku di şer de tewş biguhere û Esar biserkeve, bêguman tê biçe li ser kurdan. Kî bibe bila bibe heya ku gelek lawaz nebe, qebûl nake kurd kontrola erdekî mezin bêxin dest û li wir bandêr bibin. kurd vê gelek baş dizanin. Têkiliyên Rûsya bi Mûslûm re di vê çarçoveyê da ye. Salîh Mûslûm Esadê rasterast danane li hemberê xwe, heta ji bo ku hinek li cem muhelefeta nerm cih digire, ev ji bo Esad jî çêtir e. Ew jî dizane ku nikare bi radîkalanre rûne dikare yên nerm re birûne. PYD perçeyekê muhalefeta nerm e. Nêzikatiya Rûsya'yê jî ew e ku kurdan li der muhalefeta radîkal bihêle, û rasterast li hemberê Esad nesekinin. Lewre ku têkiliyên wan bi Esad re, ji bilî destekdayîna wek leşkerî, fînans û siyasî mimkûn nîne. Ji ber vê yekê temamî bi polîtîkayên dengebûnê dimeşîne. Nêzikatiya kurdan nekişîne enîyên hember dide nîşan.



## PKK di lîsteya rêxistinên terorî ya Rûsya'yê de cih digire? Ku cih nagire sedem çî ye?

PKK di lîsteya rêxistînên terorî ya Rûsya'yê cih nagire. Di vê mijarê de di navbera Rûsya û Rojava de nakokiyên ciddî heye. Tenê ne mijara PKK'ê de. Lîsteya rêxistinên terorî hel-westekî siyasî ye. Mesele ew rêxistina ku behsê dikin ne terorîst be an jî nebe nîne, mesele nêzikatiya wan welatan, ango ev rêxistina ku çalakê wî ew welata ku tê de ye, ev lîste li gor wan têkiliyan tê diyarkirin. Rojavayê ku PKK'ê di lîsteya terorê de îlan dike, sedema wî yê herê mezin Tirkiye ku welatekê endamê NATO'yê ye. Xemeke Rûsya'yê yê wisa nîne. Her çiqas ku li Tirkiye'yê re van salê dawî têkilîyên aborî pêş xistbijî, wek stratejîk hê di eniyên berevan cih digirin. Li hemberê hev in. Tirkiye endamê NATO'yê ye û di nav blokekê leşkerî ya li hemberê Rûsya'yê ye. Ji ber vê yekê sedemekê tine ku Rûsya PKK'ê terorîst îlan bike.

# SİWÊREG

**Navê bajêr yê fermî Pîranşar e. Pîranşar tê wateya cîhê ku ji alî pîran ve hatiye avakirin. Pîr di wateya 'oldar û ezizên bîr û baweriyên kevn' de tê bikaranîn. Li gor lêkolînan yek ji nawenda Ola Zerdeştî Bahdîn li vê heremê bûye.**




Welat Baz

Siwêreg li rojavayê Çiyayê Qerec, li ser deşta ku ber bî çemê Fîradê ve dîrêjdîbe, hatiye avakîrîn. Bajêr dî nav sêgoşa Amed, Semsûr û Ruhayê de ye.

Pîvana xaka Siwêregê ji 4 hezar km² zêdetîr e. Siwêreg li bakûrê Ruhayê cîh dîgre. Bajêr ji rojava cîranê Kolik, li bakûr cîranê Gerger, Çêrmûk û Çungûş, li başûrê rojava jî cîranê Mêrdîn, Wêranşar û Hîlwanê ye.

Li bakûrê rojavayê bajêr geliyê Fîradê, li bakûr û rojhîlatê bakûr jî Çiyayê Ziyaret, Çiyayê Gawîr û Çiyayê Qerece hene. Xaka Siwêregê jî bîli hin deverên çiya, rast e. Ji ber ku wolqanekî tefandî ye, li nêzî Çiyayê Qerece li rûyê zêwiyan kevir hene. Jî deşt û geliyên Siwêregê avên Zengeçar, Çem û Hamdûn derbas dîbîn.

Deştên Siwêregê li herema Ruhayê jî ali kîştûkalê de deverên gîrîngin. Li ser zewiyên heremê hubûbat û bîrînc tên çandîn. Her wîha rez û triyê Siwêregê jî navdayî ye. Aboriya Siwêregê li ser kiştûkal û ajalvaniyê ye. Heta salên dawîn li bajêr wek tesîsên sanayiyê tenê fabrîqayeke şîr hebû. Ji ber xizaniya bajêr, gelek Siwêregî mehên havînan diçin li heremên wek Entab û Çukurova yê kerkeriya demsalî dikin û pembû û fistiqan topdikin.

**Rêvebirî**

Siwêreg, li gor sîstema fermî navçeyeke Ruhayê ye. 93 km durî nawenda Ruhayê ye. 65 gund û şeş bajarok bi navçê ve gîrêdayî ye. Şêniya bajêr ji sedhezarî zêdetîr e. Li Siwêregê meqera leşkerî a Pîrînçlikê heye. Tesîsên Pirînçlîkê ji alî Amerîkiyan ve hatiye damezirandin. Radarên vêderê ên hassas ji bo guhdarkirin û şopandina Sûrî tên bikaranîn. Li tesîsên Selîmpiyar jî ku nêzî navçê hatine damezirandin, tê îdîakirin ku çekên kîmyewî hatine bicîh kirin.




**Nav**

Çîroka navê Siwêregê jî wek dîroka bajêr kevn e. Navê ku nîha li bajêr hatiye danîn dî pêvajoya dîrokî de ji gelek guhertînan derbasbûye. Şarîstaniyên wek Sumer, Hîtît, Asûr, Med, Mîttanî, Bîzans û Osmanî ku li ser xaka Siwêregê rêçên xwe hîştîne, her yek navekî dane bajêr. Wek mînak; 'Kînaba, Surk, Sewaworah, Sewawerek, Sebaberek, Sîbabarka, Sîklis, Suweyda, Serrek, Senn' û nîhayet Siwêreg. Peyva Siwêreg, dî çavkaniyên Ermenî û Bîzansiyan de tê wate ya 'Xerabeyên Reş'. Ev nav jî kevirên reş ê derûdora bajêr tê, ku ev kevir ji wolqanê Qereje hatine pejiqandin.

**Dîrok**

Li gor bermayiyên kolana Hassekê, li ser xaka bajêr dîroka mîrovahiyê heta dema dawîn a kalkolîtîk dîrêj dîbe. Li gor dîroka nîvîskî jî; Hîtîtî, Hûrrî-Mîttanî, Asûrî, Med, Bîzans û Sasanî di demên hukumdariyên xwe de Siwêregê bîdest xîstîne. Bajêr dî salên 700an de ketiye destê Artêşa Ereb. Pîştî destpêka şêrên Xaçî û Eyûbiyan, demek dî destê Xaçiyên Ruhayê de mayê.

Dî sedsalên 14 û 15'an de jî, ji ali artêşên Hulagû û Tîmûr ve hatiye talankîrîn. Nîhayet dî salên 1450'an de ketiye destên Sefewiyan û di salên 1517'an de jî alî Osmaniyan ve hatiye dagîrkîrîn. Siwêreg pîştî ku jî alî Osmaniyan ve hat dagirkirin, demek dîrêj wek navçeyeke Amedê hat birêvebîrîn. Li gor Şemsedîn Samî dî salên dawîn ê Osmaniyan de Siwêreg navçeyeke parêzgeha Diyarbekîr bû û xwedî 500 gund û 8 bajarok bû. Dî van deman de şêniya bajêr 38 hezar bûye. Ji vê nifûsê 13 hezar kes Ezidî, Ermenî û Suryanî bûne.

Bajêr pîştî damezrandîna Komara Tîrk jî demekî wek parêzgeh hatiye bîrêvebirin û sala 1927'an de wek navçeyekî bî Ruhayê ve hatiye gîrêdan.

Bî destpêka sedsala 20'an ku dî nav Împaratoriya Osmanî de ramanên netewî belavbûn, bî armanca parastîna mafên netewî êkurdan, li Stenbol ûkurdîstanê rêxîstînên wek Kurdistan Teali Cemiyeti vebûn. Vê cemiyetê li Siwêregê jî şax vekir. Di nav xebatkarên vê komela welatparêz de ji Siwêregê mudurê polîsan Xelîl Fexrî, nivîskarê kovara Jîn Hilmiyê Siwêregî û ji serekên Eşîra Millî, Mehmûd, Smaîl, Xelîl, Bahûr û Evdirehman jî hebûn.

Ruha pîştî ku Dewleta Osmanî dî Şerê Cîhanê ê Yekem de têk çû, dî sala 1919'an ji alî frensiyan ve hat dagîrkirin. Kurdên deverê bî fîta Kemalistan li dîjî Artêşa Frensî rabûn. Pîştî berxwedana welatparêzên kurd ku Ruha ji Artêşa Frensî hat rîzgarkirin, Kemalist ketin heremê. Her wîha soz û bextê ku dabûn kurdan bicîh neanîn.

Li ser vê yekê dî serî de Eşîra Millî, hêzên welatparêz serhîldan. Dî encama serhîldana ku dî Hezîrana 1920'an de destpêkir, Siwêreg û Wêranşar jî tê de heremeke fîreh bîdest xîstîn. Dî dawiya rojên meha Tebaxê de Kemalistan bi alikariya hevkarên heremê, êrişê hêzên serhilder kîrîn û Siwêreg û Wêranşarê ji wan sitendin.

Siwêreg dî dema Serhîldana Şêx Seîd de jî di nav refên welatparêzan de bû. Di dema serhildanê de ku Şêx Seîd bi ser Amedê ve meşiya, fermandarê wî Şêx Evdirehîm jî tevi şerwanên xwe berê xwe da Madenê. Hêzên Şêx Evdirehîm piştî ku ketin Madenê, hatin Siwêregê û li tevlî hêzên Şêx Eyûbê Siweregî berê xwe dan Erxenê. Di vê navberê de Şêx Seîd ji bo tevlî wan bibe, ji malbata Îbrahîm Paşa Millî re nameyekî nivîsandibû. Di encam de ku serhildan di sala 1925'an têk çû. Kemalistan welatparêzên Siwêregê girtin û ew di 25'ê Gulana 1925'an tewî serokên serhildanê li Amedê dardekirin.

**PDK-T li Siwêregê hat avakirin**

Siwêreg dî dîroka kurdan de cîhekî taybetî dîgre. Her dem li vê navçê tovên welatparêziyê geş mane. Dî salên dawîn de jî navçe di warê tevgera netewî de bûye çavkaniyeke gîrîng. Wek mînak di nav 49 welatparêzên ku di sala 1959'an hatin girtin, çar kesên wek Ali Karahan, Necati Siyahkan, Mehmet Aydemir û Mehmet Özer ji Siwêregê bûn.

Di dîroka nûjen a Kurdistanê de, piştî salên qira Dêrsîmê, di navkurdan de rêxistinekî netewî yekem car di 1965'an de li vî bajarî tê damezirandin. Ew Partiya Demokrat a Kurdistan li Tirkiyê ye. Serok û damezrênerê vê partiyê Parêzer Faik Bucak ê Siwêregî ye. Dewletê piştî ku bi damezrandina partiyê hisiya, Faik Bucak bi tetikkêşan ve da kuştin.

Di heman salan de Mebûs Mustafa Remzi Bucak ku ji Siwêregê bû û wek welatparêzekî dihat naskirin, ji ber zextên rejimê tevî malbata xwe di sala 1959'an de koçî Amerîka kir. Huquqzan û siyasetvan Remzi Bucak li dervayê welat ji bo mafên kurdan gelek xebatan kir. Mustafa Remzi di sala 1985'an de li Fransa jiyana xwe wendakir.

Gelê Siwêregê her tim serhilder hatiye naskirin. Mînaka ku di sala 1958'an de hat dîtin vê taybetiya bajêr nîşan dide. Li qerekolê şefê polîsan destdirêjiya jinekî dike. Li ser vê yekê gelê Siwêregê serhildide û êrişên daîreyên dewletê dike. Hemû daîre tên talankirin û dagirkirin. Ji Ruhayê leşker tên serhildanê ditefînin û gelek kes digrin.

Dî dawiya salên 1960'an de ku li Kurdîstanê zexta qomandoyên Tîrk destpêkîrîbû Siwêregê jî dabû berxwe. Di van salan de li hember zîlma rejimê û zexta axayan, xwepîşandanên şermezarkirinê dihatin lidarxîstîn. Yek jî mekanê van cîvînan Siwêreg bû. Li Siwêregê di van deman de dû mitîng hatibûn lidarxistin. Piştî xwepîşandana Tebaxa 1968an ku çend kes ji alî polîsan ve tên girtin, Siwêregî diavêjin ser qereqolê û van kesan bi zorê ji polîsan distînin û wan derdixin dervayê bajêr.

Dîsa mînaneke ku vê taybetiya Siwêregê nîşandide di sala 1973'an de qewimî. Xortekî bi navê Ramazan Marangoz, mudûrê polîsên Siwêregê di maqamê wî de dukuje. Brayê Ramazan ji alî polîsan ve hatibû kuştin û wî jî heyfa xwe girtibû.

Di dîroka Bakûrê Kurdistanê de, di salên dawîn de cejna Newroz cara yekem di sala 1976'an de li Siwêregê hatibû pîrozkirin. Piştî ku şoreşgeran li kela bajêr agir pêxistibûn, bajariyan jî li kolanan li dora agir reqisîbûn û bi heta şeveqê dengê çekan nesekinîbû.

**Eşîrên Siwêregê**

Li Siwêregê eşaîrî û axatî xurt e. Dîroka Siwêregê dîroka eşîra ye. Li bajêr sê eşîrên sereke hene. Bûcax, Kirwar û İzol. Qismekî Bûcaxan ji demên serhildana Brahîm Paşa vir de hevkarên dewletê ne. Di demên dawîn de jî her tim li dijî tevgera netewî û di helwestên civakî de bûne alîgirê dewletê. Dewleta Tirk ji bo heremê di bin qontrola xwe de bigre, her tim di nav eşîrên Siwêregê de nakokiyan derxistiye û wan berî hev daye. Di van pevçûnan de jî pişt daye Bûcaxên hevkarê xwe. Ji ber vê fîtkirinê heta salên dawîn di nav eşîrên Siwêregê de şer û xwîn hebû. Çend mînak ji van pevçûnan; di sala 1974'an de Qeregeçî û İzolî, di sala 1976'an de Alxasî û Qelexanî, Mizrayicî û Razanî, di sala 1977'an de Desmanî û Tuverkî di sala 1978'an de Suryanî û Kelexanî û ji 50 salan virve jî Kirwarî û Bûcaxî...

Bapîrê Bûcaxan Hecî Mistefa Efendî û Elî Efendî di dawiya sedsala 19an de ji bakûrê Amedê ji alî Hezroyê hatine deverê. Elî Efendî di sala 1906'an de dibe serokê Şaredariya Ruhayê û paşê jî di Meclîsa Mebûsan a Osmanî de cîh digre. Hevkariya qîsmekî Bûcaxan a bi dewletê re digîjê dema Serhildana Şêx Seîd. Lê dîsa jî heta salên darbeya 1960'an sê cara hatine sirgûnkirin. Elî Efendî ku piştî Serhildana Şêx Seîd tê sirgûnkirin di sala 1941'an li Enqerê dimre. Di sala 1960'an de piştî derba leşkerî Celal Bucak û Haki Bucak ku alîgirê Partiya Demokrat bûn, demekî li Amasya û Toqatê sirgûn man. Eşîr ji van salan vir ve her dem mebûsekî dişîne meclîsê. Ji vê eşîrê Hesen Oral 30 sal wek parlamenter û senator hat hilbijartin. Bucaxî li gundên Siwêreg û Hîlwanê belav bûne. Qismekî Bucaxiyan ji mêj ve di nav tevgera netewî de wek kesên navdar cîh girtine.

**PKK li Siwêregê hat daxuyandin**

Di dawiya salên 1970'an de li Kurdistanê şerê çekdarî destpêkir. Di 27ê Mijdara 1978'an de ku Partiya Karkerên Kurdistanê li Amedê hat damezirandin, piştî salekî din li Siwêregê hat îlankirin. Piştî demekî şer li derûdora Siwêreg û li hemû Kurdistanê belav bû. Di bûyerên Siwêregê de nêzîkî 200 kesî hatin kuştin. Ji ber koçberiyê nifûsa bajêr ji 50 hezarî daket 25 hezarî. Aboriya bajêr şikiya.

Siwêreg piştî cûntayê bûbû zewiyên îşkenceyê. Bi hezaran kes hatin girtin, gelek kes di îşkenceyan de hatin kuştin. Ne tenê li Siwêregê, bi sedan kesên ku ji vî bajarî hatin girtin, di zîndanên Amed û Ruhayê de hatin îşkence kirin. Ji wan Siwêregiyan Mahmut Zengin û Eşref Anyık, li zîndana Amedê di berxwedana sala 1982'an de jiyana xwe wendakirin.

Ji Siwêregê gelek kesên ku di tevgera netewî û di çepgiriya Tirkiyê de nav dane jî derketine. Wek mînak şaîr Ahmet Arif, zanist Haluk Gerger, rejîsor Yılmaz Güney, hozan Şîwan Perwer û gelek şexsiyetên din jî, ji Siwêregê ne. Necmettin Büyükkaya mînakeke ji wan e. Büyükkaya di sala 1943'an de li Siwêregê li Gundê Qerexanê ji dayik bû. Büyükkaya bi salan li çiya, gund û bajarên Kurdistanê şoreşgeri kir. Di sala 1982an de hat girtin û di 22ê Çile ya 1984'an de di Zîndana Amedê de bî işkencê hat kuştin.






**BÎRECÛK**

Nawçeyên Ruhayê ê din jî bi qasî Siwêregê navdarîn. Yek jî nawçeyên kevn ê Ruhayê Bîrecûk ê. Navça ku 84 km li rojavayê Ruhayê dîkeve li keviyên Fîradê cîh digre. Bîrecûk ji ber ku li ser ku rêyên avê bûye ji mêj ve nawendeke girîng bû. Di sedsala 17an de li navçê keştîxaneke biçûk hebû. Bi van keştiyan li ser Firad û Diclê seyrûsefera bazirganiyê dihat kirîn. Piştî ku li heremê rêya hesin hat çêkirin û welatên Ereb ji Împaratoriya Osmanî veqetiyan û Kurdistan bi sînoran perçebû, Bîrecûkê jî paş ve ket.

Dîroka vî bajarî dîrêj b.z heta salên 2 hezarî dîbe. Navê kevn ê bajêr Bîrte bûye. Bîrecûk dî pêvajoya dîrokî de leqayê gelek dagiran bûye. Bajêr dî sala 1923an de wek nawçe bi Ruhayê ve hatiye girêdan.

Bîrecûk cîranê Belqîs, Xelfetî, Heweng û Sîrûcê ye. Xaka navçê jî 800 km² zêdetîr e. Çîl gund û bajarokekî bî navçê ve gîrêdayî ye. Erdîma Bîrecûkê jî ali çiyayên Arat, Babahat, Beko û Qalazan ve hatiye dorpêçan. Şêniya bajêr ji 60 hezarî zêdetîr e. Li Deşta Bîrecûkê berhema sereka pembû ye. Jî bîli kîştûkala hibûbatan kindir û kenewîr jî tê çandîn. Her wîha ajalvanî jî dî nav gundiyan de pêşketî ye.

**Sîsiyên Keçel**

Dema qala navê Bîrecûkê tê kirin, teyrên Sîsiyên Keçel, bi navekî din 'Eynaqên Keçel' tên bîra mîrov. Zêdetirê Bîrecûkê li Fasê, li Bakûrê Afrîqayê jî qoloniyeke van teyran heye. Di sala 1879'an de ji alî zanistên İngîliz Dan Ford ve hatine tesbîtkirin. Piştî salên 1950'an ku li Kurdistanê di kiştûkalê de dermanên zîraî hat bikaranîn, nifşê wan jî ket xeterê. Kurmikên axê nemabûn û rêya koçberiya wan jî zahmet û dîrêj bû. Jî ber vê yekê di sala 1977'an de li Bîrecûkê ji bo Sîsiyên Keçel, îstasyonekî parastinê hat vekîrîn. Ev teyr her sal di mehên sibatê de tên li zînnarên derûdora Firadê datînin. Piştî ku çêlik derdîxîn û wan hinek mezin dikin, di mehên tîrmehê de jî koçdikin diçin keviyên Derya Sor.

Sîsiyên Keçel teqrîben 25-30 sal dijîn. Ji ber ku serê wan rûte, bi navê, 'Sîsiyên Keçel' an jî 'Enyaqên Keçel' tên naskîrîn. Ev teyr ji alî Bîrecûkiyan ve pîroz tê qebûlkirin. Hatina Sîsiyan ji bo wan mizgîna biharê ye. Berê dema Sîsî dîhatin bajêr, Bîrecûkî qurban didan. Di salên dawîn de ji bo Sîsiyan festîwalekî tê lidarxîstîn. Bîrecûkî dawet û şahiyên xwe jî li bin siya Sîsiyan datînin. Ew bawer dikin ku, ev teyr ji wan re çava biharê tîne, wê herwiha bexteyarî û dilşadî jî bîne.



BasNûçe 7 - 13 Îlon 2015

Siwar Bedirxan

# Zerdeştiyên kurd êdî xwedî navend in

**Di Avestayê de li ser wekheviya jin û mêran ji gelek pend hene û bala wê yek tê kişandin ku jin û mêr hevrê ne û hatiye tespîtkirin ku di serdama ola Zerdeştiyê de mafê hemû bûneweran hatiye parastin**



Li gor zanyariyên li ber destan wisa tê zanîn ku yekemîn baweriya kurdan a pîroz ola Zerdeştiyê ye. Helbestvanê kurd ê serdema modern Cegerxwîn jî eşkere dike ku peyva Zerdeşt û navê Zerdeşt pêxember ji (zar-ziman deşt rastî: rastgo) tê. Ola Zerdeştiyê beriya mîladê di navbera salên 650-580'yî bi destê pêxember Zerdeşt belav bûye. Li hêla din ola Zerdeştiyê weke ola medan jî tê zanîn. Piştî şikestxwarina medan û desthilatdariya sasaniyan a Îranê û li Kurdistanê jî baweriya Zerdeştiyê her xwedî tesir bûye û li gor zanyariyan Zerdeştî baweriya împaratoriya sasaniyan bû. Her wiha piştî sedsala 7'an û belavbûna ola îslamiyetê û têkçûna sasaniyan a li hember dewleta îslamê bû hokara wê yekê jî ku baweriya Zerdeştiyê bê qedexekirin, atêşgedeyên ku cihê ayînan bûn bêne şewitandin û pîrên Zerdeştiyê jî bên zindanî kirin.

Zanyarî û pendên ola Zerdeştiyê ji pirtûka pîroz a Zerdeştiyê ji Avestayê tên zanîn. Zimanê Avestayê ji hêla zimannasan ve weke zimanê Avestayî hatiye destnîşankirin û ew ziman jî yek ji zimanê Hînd Ewrûpî yê koma Îranîye. Li hêla din ku em bên ser zimanê Avestayê divê em eşkere bikin ku 2 lehçeyên Avestayê hene û lewre ferq di zimanê Gatha Avestayê û Avestaya nû de heye. Gatha Avesta ji pendên Zerdeşt pêxemper pêk hatiye û Avestaya Nû jî piştî Zerdeşt pêxember li Avestayê hatiye zêdekirin û weke pendên Zerdeştiyê tên zanîn. Her wiha piştî ku ola Zerdeştiyê ji hêla împaratoriya sasaniyan ve hat naskirin şahên sasaniyan li baweriyê Zerdeşetiyê xwedî derketine û bermayî û destxetên wê baweriyê berhev kirin û ew bi zimanê pehlevîkî ji nû ve nivsîsîn û tomar kirin. Li gelek bajarên Kurdistanê atêşgede vekirine da ku xelk bikaribe ayînên xwe bi cih bîne. Bajarên weke Silêmanî, Hewlêr, Amed, Wan, Rewandûz Hemedan û herêmên weke Bîcarê navêndên sereke yên ola Zerdeştiyê bûn.

## Mafê hemû bûneweran hatiye parastin

Dema em li pend û şîretên Zerdeş pêxember dinerin em yekser li wê yekê rast tên ku Zerdeşt pêxember xwestiye qencî, başî rûşenî di nava civakê de belav bibe û her tim rûşenî serdest be. Her wiha li hêla din jî di Gatha Avestayê de bal hatiye kişandin ku xirabî û zikreşî jî dibin sedema rûreşiyê û divê civak xwe ji rûreşiyê dûr bixe da ku rûşenî serdest be. Di Avestayê de li ser wekheviya jin û mêran jî gelek pend hene û bala wê yek tê kişandin ku jin û mêr hevrê ne û hatiye tespîtkirin ku di serdama ola Zerdeştiyê de mafê hemû bûneweran hatiye parastin. Bi taybetî bala wê yekê hatiye kişandin ku divê mirov eziyete nedin sewalan û heta ji destê wan bê li sewalan xwe jî xwedî derkevin. Tesîra ola Zerdeşt pêxember bi teybetî, weke pêşketinna demê û piştre ku derketina li hemû olên mazin ên yek-xwûdayî jî bûye. Têgihiştina qancî û xirabiyê û avabûna rêgezên ehleqî dikevin vê çerçoveyê ye. Li gor zanyariyan li welatên weke HIndistan, Îran, Pakîstan, Kanada û DYA'yê zêdetirî 600 hezar bawermendên ola Zerdeştiyê hene.

## Kurdistana keskesora ayîn û neteweyan

Kurdistan ji hêla pêkhateyên ku lê dijîn weke keskesorekê ye. Ji hemû baweriyan mirov û cemiyet bi aramî lê dijîn. Bi taybetî piştî destekeftiyên mezin ê li Başûrê Kurdistanê nûnerên pêkhatiyên cuda di parlementoya Kurdistanê de nûnertiya cemiyet û ola xwe kirin. Her wiha Başûrê Kurdistanê ji hêla welatên Rojava jî weke mînak tê nişandan. Rêveberiya Başûrê Kurdistanê xwe jî şerê ayîn û mezheban ê li Rojhilata Navîn dûr xist û di nava 23'ê salan de çanda demokrasiyê, pêkvejiyanê û çanda tolereye anî Rojhilata Navîn. Di gel şerê DAIŞ'ê niha bi hezaran xelkê Sunne mezheb, Şîe mezheb, Cihû, Mesîhî, Êzdî bi hev re li nav sînorên Kurdistanê dijîn.

Her çend niha Herêma Kurdistanê niha bi DAIŞ'ê re di cengê jî de be ol û pêkhateyên cuda bi aramî dijîn û tu xetere li ser wan tuneye. Heri dawî Zerdeştiyên Herêma Kurdistanê jî li bajarê Silêmaniyê Navendeke Ola Zerdeştiyan vekir. Zerdeştiyên Kurdistanê li bajarê Silamaniyê bi beşdariya nûnerên partî û aliyên siyasî, rêxistinên civakî û nûnerên Wezareta Karûbarên Olî yê Herêma Kurdistanê, nûnerên ol û zanyarên olî, yekemîn nûnertiya navenda taybet ya Zerdeştiyan bi merasîmekê vekirin.

## "Piştî hezar û 400 salî li Kurdistanê navenda erdeştiyan"

Di vekirina navendê de sirûda Zerdeştiyan hate xwendin û 5 zarokan kevokên aştiyê bo aştiyê firandin. Di merasîmê de Pîr Loqman Hecî Kerîm weke pîrê Zerdeştiyan hate destnîşan kirin. Di merasîmê de nûnerên sazî û partiyan axîvîb û eşkere kirin ku divê mafê hemû pêkhateyan bê parastin û rê li ber wê yekê jî bê vekirin ku pêkhateyên olî erkên xwe yên ayînî bi cih bînin. Her wiha Pîrê Navenda Ola Zerdeştiyê, Pîr Loqman Hecî Kerîm di daxuyaniyek taybet da heftenameya BasNewsê Di daxyaniyê de Hacî Kerîm da zanîn ku ola Zerdeştiyê bi qedexeyan re rû bi rû maye û piştî hezar û 400 salî ew dîsa dikarin navendan li Kurdistanê vekin û erka xwe ya olî bi cih bînin Hecî Kerîm wiha berdewam kir: "Piştî hezar û 400 sal ji qedexekirina ola pîroz a Zerdeştiyê, yekem care ku nevenda olî ya Zerdeştiyan li Kurdistanê tê vekirin. Bê guman eve veguhertinek mezine di dîroka Kurdistanê de. Hêvîdarim ku ev bibe bingehê pêkvejiyana aştiyane."

## "Gotina baş, karê baş, hizra baş"

Di berdewamiya axaftina xwe jî de Hecî Kerîm da zanîn ku piştî navendê dê Agirgehek mezin jî bo Zerdeştiyan vekin û got: "Xweşhalim ku Pîrê û rêberiya vê navendê dikim. Piştî serdema Sasaniyan eve yekem carek ku bi fermî pîr tê destnîşan kirin. Hêvîdarim ku carek din stêrka azadiyê li ser Kurdistanê diyar bibe." Pîrê Zerdeştiyan got, "Ev navend li Silêmaniyê vekirine da ku ji bo gel bêjin bi hemû şiyanên xwe me himêza xwe bo gotina baş, karê baş, hizrê baş vekiriye. Ev navend bo parastina aştî, yekrêzî, pîrozî û kevneşopiyên gelê kurd, ajaldostî, jîngehdostî hatiye vekirin." Her wiha çave rê tê kirin ku li Başûrê Kurdistanê navênd û nûnertiyên ola Zerdeştiyan zêde bibin û ew jî beyî tu muşkile û arîşeyan erkên xwe yên olî bi cih bînin.





"Gonî, eve gonî nîna şutene, gonî eve uwe yena şutene."

# Vateyê verênan



Nadire Güntaş Aldatmaz

Kirmancî sohbet û qalkerdişê xo bi vateyanê verênan û îdyoman xemelnenê. Vateyê verênan, tecrubeyê çend seyî serran zereyê xo de nimnenê. No semed ra kî parçeyêde zaf muhîm yê kulturê şarî yê. Karakterê şarî zaf rind musnenê ma. "... Dewletîya nê folklorî de çîyo ke verê verkan vînenîme, vateyê verênan, vateyê şarî û mertal ê. Kurdî sohbetanê xo bi qafîye û cumleyanê rîtmîkan xemelnayene ra hes kenê." Vateyê verênan ziwanî tîtiknenê û kene dewletî. Tesîrê yew ziwanî nîya bi vate û îdyoman beno zîyade, beno berz. "Vateyê verênan tecrubeyanê derg û dilayan ra neselîyayê, qerarê înan qetî yo; wayîrê şertê xo yê, her wext hukmê înan vîyareno û şîretê muhîmî tede estê... Armancê vateyê verênan o yo ke rayîrê rastî bimusnê, şîretî ro kesî bikê, merdimî/e hîşyar û haydar bikê." Vateyê verênan mecazkî yê. Bîyayîşê tebîetî sey yê însanî ameyê vatene. Rasta xo tebîetî ser o vajîyê la qesta xo însanî yê.

**Çend nimûneyî:**

**Awa bêvenge ra biterse.**

Manaya nê vateyî kesê ke her çîye xo asen o, înan ra meterse. Kirmancan tecrube kerdo ke kesê ke dizdî ya karê kenê, zaf qalê ê karî nêkenê. Çi xirabînîye ke vejîyo înan ra vejîna. Seba çîyê nimiteyî kî ti nêşkîna tedbîrê xo bigîra.

**Bike bivîne, meke mevîne.**

Ti se bikerê, xirabinîye yan zî rindîye, aye vînenê. No vate, kerdena rinde telqîn keno.

**Cayê camêrdî yan binê erdan o yan peyê caxan o.**

No vate karakterê kurdan fîno re roşnîye. Seba kurdan, kirmancan camêrdî kesê cengawer ê. Hepiskewtene kî qet çîyode xirabin nîyo, eksê cî qiseyê esto, vanê "Kamo ke qet hepis nêkewto her o".

**Çêlikê morî bê axwû nêbeno.**

Tîya tenê kîndarîye esta. Ma bese nêkeme ke vajîme kirmancî qet kindar nîyê. Hetê ra zî bi nê vateyî bala merdimi ancîna bi serê tehluke û haydarîye telqîn bena.

**Deyn dana mi, deynê kirmancîye bo.**

Çiqas ke pê halê xo qayîl nêbê kî unca xo bi xo îtîbar bi yewbînî anê. No vate bawerbîyayena bi kirmancan musneno.

**Ecelê bize yeno, şina nanê şiwanî wena.**

No feraset zafê şaran de esto. Ti ke ere bela fetelîya bela zî rastê to beno. Zerar kesî mede ke kes kî to nêdo.

**Ê bizda kol bizda estirîyîn rê nêmanena.**

Nê vateyî de ma hîsanê merhametîye vînenîme. Ê ke bêhêz û bindest ê, rojê muheqeq heqa xo cênê. Edalet seba înan zî tecelî keno. Kirmancî tim wazenê ke edalet bêro ca.

**Fek weno, ri şermayeno.**

No vate, nefsî ser o yo. Merdim ke pê nefsê xo nêgirewt peynîye de şermezar beno.

**Gonî, eve gonî nîna şutene, gonî eve uwe yena şutene.**

Tîya dişmenîye rexne bena. La kirmancan de dewaya gonî esta. Çiqas ke no hal û no vate nakokî aseno kî, rastîye de kirmancan, faydeyê heyfgirewtişî nêdîyo ke tayê cayan de dewaya gonî endî nêmenda. Tayê cayan de kî no tore her roje tenêna beno sist.

**Her vas koka xo ser o rêwîn o.**

Tîya muhîmîya kokî vînenîme. Kokê merdimi ke çik o, bi xo zî o yo. Vasê xirabinî ser o vaso rind nêrewîno. Merdimê rindî ra yewode xirabin nêvejîno. Seba kirmancan cayê merdimî, eslê merdimî muhîm o.

**Hurendîya çakuç û kulvikî bena wese, hurendîya qesê xiravinî, wes nêbena.**

Qise, zerrî ra yeno, zerrî şikneno. Zerrîya merdimî ke şikîye, hal ve halî weş nêbena. Merdim, dejê canî xo vîr ra keno, la dejê zerrî tim vîrî der o.

**Istora kihêl zengû xo nîyana.**

Merdim her çî ke keno xo rê keno. Merdim ke rind vindo, xirabinîye nêano ere sareyê xo ser.

**Însanî şito kal werdo.**

Her ca de qîymetê însanî zaf o. La nê vateyî de bêbawerîye esta. Însan çiqas ke rind bo unca kî bêîtîbar o.

**Yew golik nameye jew naxirî xeripneno.**

No vate vano, kes ke çîyode nebaş bikero û mensubê yew grûbê bo, grûbe pêro binê tomete de manena, bena gunekar. Kerdena yew kesî, pêrune bine tomete de verdana.

**Kemere hurêndîya xo de giran a.**

Ti çiqas ke giran vinderê hende rind o. Zaf huyayîş, laubalîbîyayîş û sivikîye zaf weş nîya. Statu û halê xo gore vindetene, seba kirmancan muhîm a.

**Luya geyraya, şêrê vindertî ra hewlêr a.**

Tîya zî muhîmîya kar û gurîyayîşî yena vatene. Hal û wextê to çiqas qe rind bo kî ti gereke winî tip tol nêvinderê.

**May û pî timo kê dest nêkwenî.**

No vate, tore û karakterê kirmancan zaf weş musneno. Maye û pî tim cayode tewr berz der ê. Yew zî qet kes herinda înan nêgêno.

**Nîsane şî sere, pelê tuyêri bî pere.**

Bi vatişê qafîyeyîn û zaf weş, vurîyayîşê mengan, mewsîman vano.

**Oyo ki kerd xelisya, o yo ki nêkerd fetisya.**

Teba kerdene qet teba nêkerdene ra rindêr a.

**Pay nê morî meve ke mor pê to nêcêro.**

Ti ke pêskarê kesî nêbê kes pêskarê to nêbeno, çike xirabinîye ra xirabinîye vejîna.

**Roza ke maye dîye, honde kî çêna vînena.**

Seba tayê kurdan vateyode romantîk esto. Vanê ke kurdî qîymet danê cinîyan. No vate rast nîyo. Çike cinî sey pêro cinîyanê na mintiqa koleyê camerdan ê. No vate kî halê cinîyan musneno. Qederê kêna belî yo, sey yê maya xo yo.

**Şeytanî ra nêbo verg û mey a pîya çerenê.**

Fizilîye, fesadîye ke çine bo her kes yewbînî de dost û bira yo.

**Tasê dişmenî ra awk mewi.**

Dişmen tim dişmen o. Qet peyê xo meçarne ere dişmenî. Tîya kî bêîtîbarîye vînenîme. Kirmancan zaf derba dişmênan werda. Belka kî coka înan ra bawerbîyena xo hende kerda vîndî.

**Uwe heta lêle nêbo zelale nêbena.**

Tîya yewbîyena tezatan vînenîme. Her çî bi tezatê xo esto.

**Vergî de weno, qilancike de qisneno.**

No vate kî unca qalê bêîtîbarîye keno. Kesê ke lewê kesê bînî de sey ey vindenê, sey xo nêvindenê, bêkarakter ê, vate de bahsê ê kesan beno.

**Xizon o, halê xwi nêzono.**

Unca vateyêde zaf rastî vînenîme. Însanê ke kêmanîyê xo zaf ê û halê xo nêvînenê, bahsê înan keno.

**Yew saya ki sayêr ra bo, herkes çuwa xwi ver de dano.**

No vate seba kênekanê ezeban yeno vatene. Kêneka ezebe her kes wazeno ke tey bizewecîyo. Yan kî çîyode rind ke bî, her kes wazeno ke wayîrê ey bibo.

**Zono şîrên morî lone ra vezeno.**

No vate kî weşîya, rindîya ziwanê weşî vano. Hal çiqas xirabin beno wa bibo, merdim çiqas xirabin beno wa bibo, ti karê xo bi ziwanê weşî ra bivîne. Nê vateyî de vînenîme ke kirmancî aştîye ra zaf hes kenê. Tena nê vateyî de nê, zaf vateyan de vînenîme ke kirmancî heskerdoxê aştîye û rindîye yê.



Sason :

# Li Kurdistana qedîm, warekî kozmopolît

Kurdistan, di dîroka xwe de wek erdnîgarî rengên cuda ku bi hev re bexçeyê rengan pêk tîne dihewîne. Lê belê bi destpêka sedsala 20. re ev rengînî, ji ber şer û bîrdoziyên yekperest çilmisîn. Hin herêmên ku di dema xwe de kozpmopolît bûn û pirçandî û pirrengiyê hembêz dikirin tenê di nav rûpelên dîrokê yên riziyayî de veşartî man. Yek ji van hêrêmên ku bi hezarên salan neteweyên cuda yên wek; Kurd, ermen, asûrî, suryan û ereb bi çand û pendên xwe bi aramî dijiyan jî herêma Sasonê ye. Di derbarê dîroka qedîm a Sason'a ku cihê dîdariya kurd û ermenan bûye de Lêkolîner Behçet Çîftçî di derbarê dîroka Sasonê de zanyarıyên xwe bi me re parve kir.

## Sason: Welatekî di navbera Armeniye û Kardukh'an de

Lêkolîner Behçet Çîftçî'yê ku bi salan e li ser babeta ermenê Sasonê xebatan dimeşîne, li ser dîroka kevin a Sasonê diyar kir ku çavkaniyên dîrokî yên ku qala herêma Sasonê dikin deqên mîxî ên somerî, asûrî û ûrartûyiyan in, Çîftçî got: "Bi taybetî jî deqên dema asûriyan yên navbera sedsalên 13. û 7. qala konfederasyona Naîriyan a li herêma Sasonê dike. Ev konfederasyon,



hebûna yekîtiya hozên vê herêmê yên ku li hember êrîşên asûriyan bi hev re tevgeriyane şanî me didin" Çîftçî, destnîşan kir ku girîngtirîn çavkaniya di derbarê Sasonê de agahî dide mirov 'Anabasîs'a Ksenophon a beriya zayînê 401'an e. Li gor vê çavkaniyê, herêma Sason di navbera welatên ermen û kardoxiyan de ye û gelên ermen û kurd bi hev re jiyan e. Derbarê navên qedîm ên Sasonê de jî Behcet Çiftçi da zanîn ku somerî navê 'Sûbîr'ê li Sasonê wergirtiye, asûrî wek 'Sobarto' nav lê kirine û ji pê re jî navên wekî 'Sanasûnk' an jî 'Sasonk' di çavkaniyan de derbas dibin.

## Dîroka ermeniyên Sasonê

Di derbarê dîroka van ermenan de Behçet Çiftçi da zanîn ku beriya serdema Osmaniyan, herêma Sasonê di sedsala 6. û 3. ên beriya zayînê ji aliyê xanedanên ermen ên wekî Yervandûnî, di sedsala 2. û 1. ên beriya zayînê ji alî Artaşesyan û di sedsala 1. û 4. ên piştî zayînê jî ji alî Arşûkanî ve dihat birêvebirin û di sala 885(an de bi mîrektiya Toronê tevlî Împaratoriya Bagratûnî a bûye û dûre jî bi Mamîkanya û Tornîkyanan ku xelefên Mamîkiyan bûn hat girêdan. Behcet Çiftçi destnîşan kir ku piştî sedsala 12. li vê herêmê kurd çalaktir bûne û kurd û ermenan bi xetera Osmaniyan hesiyane û bi mebesta bergirtina vê xeterê mîrektiya ermenan a Sasonê û mîrektiya kurdan a Diyarbekirê bi hev re hevkarî kirine lê belê bi ser neketine. Her wiha Çiftçi da zanîn ku piştî şerê Çaldıranê yê 1514'an rêveberiya Kurdistanê ketiye destê Osmaniyan û desthilatiya mîrektiyên kurdan bihêztir bûne û pê re li Sasonê mîrektiya kurdan hatiye damezirandin ku navendên wê berê Bozikan, piştre jî Hezo bûne û ermenan li hin deran bi serê xwe li hin deran jî digel kurdan heta dawiya sedsala 19. wek nîvserbixwe hebûna xwe domandine. Behçet Çiftçi agahiyên îstatistikî jî da û got: "Li gor serhejmara Patrîkiya Ermenan di navbera salên 1913 û 1915'an de li Sasonê 156 gundên ermenan, 127 dêr, 6 keşîşxane, 15 dibistanên ermenan û 2812 malbatên ermen hebûne û hejmara wan bi tevahî dike 24233 ermen. Lê belê niha gelekî kêm in lê ermenên hatine misilmankirin jî gelek in ku li cihên curecur ên Tirkiye û cîhanê belavbûyî ne.

## Navenda tevgera azadiya ermenan: Sason

Di nav rûpelên dîrokê de li Sasonê 2 serhildanên ermenan bala meriv dikişînin. Derbarê van serhildanan de Behcet Çiftçi ragihand ku Sason di dawiya sedsala 19an de bû navenda tevgera azadiya ermenan û wisa domand: "Bi bacên di sala 1890î de dihatin komkirin têkiliya kurd û ermenan xirab kir. Digel rêzikên Fermana Tanzîmatê nedihatin sepandin serekên eşîrên kurdan jî komkirina bacên 'Hefîr'ê domand û di navbera gundên ermen ên Berm û Kızılağaç û eşîrên kurdan de pevçûn dest pê kir ku herêmên Sason û Talvorîk hêj nîvserbixwe bûn. Evdilhemîdê II. jî ev pevçûna kurd û ermenan wek fersendekê dît û bi Hengên Hemîdiyeyê pevçûnên li taxan har kirin û li ser vê yekê Partiya Hınçakê gûndî birêxistin kirin. Dewleta Osmanî jî ev yek wek serhildanekê nirxand û di sala 1894an de bi fermandariya Muşîr Zekî Paşayî bi artêşeke mezin ev serhildan sekinand. Piştî vê serhildanê ermenên li derûdora Hoyt, Talvorîk û Andok dijiyan derbeke mezin xwar, gund hatin şewitandin û wêrankirin." Behçet Çiftçi got ku piştî vê serhildanê bo jinûveavakirina rêvebiriya Sasonê osmaniyan xwest ku li Girên Talvorîk û Şenîkê leşkergehan ava bike lê ermenan li dijî vê yekê derketin û bi piştgiriya girseyên çolterî ên li Sason û Mûşê dijiyan bi serekiya 'Antranîk'î serî hildan û di sala 1904an de di navbera osmanî û ermenan de pevçûnên tund hat jiyîn û piştî van pevçûnan nêzîkî 3 hezar kes hatin kuştin.

## 1915 û Sason...

Gelo ermenên Sasonê komkujiya ermenan a 1915'an çawa jiyan? Li ser vê pirsê Çîftçî da zanîn ku beriya 1915'an li Sasonê gelheya ermenan gelekî zêde bû û di salên 1894 û 1904'an de ermen rastî du operasyonên leşkerî hatin û di encamê de nexasim li herêmên Hoyt, Talvorîk û derûdorrên Çiyayê Andokê de gundên ermenan rastî tadeyên tund hatin û wisa domand: "Nezaretiya Navxweyî ya Osmaniyan ji bo têkibirina herêmê, bi taybetî jî Sason û Talvorîkê bi fermaneke nepen hişyariyek şandibûn waliyan. Ermenên Sasonê ku li dijî sepandinên leşkerkirin û koçberkirinê derdiketin xwe hilkişandin keşîşxaneyên asê û xwe parastin"

## Bermayînên ermenan li Sasonê

Herêma Sasonê tevî delaliya sirûştî, ji ber bermayînên dîrokî jî hêjayî geşt û seyranê ye. li nav çiyayên asê û biheybet, bermayînên kevnare xwe sipastine van çiyayan. Behçet Çiftçi derbarê avahiyên kevin ên ermenan de agahiyên girîng dan û got ku girîngtirîn avahiya ermenan a li Sasonê Keşîşxaneya Surp Petrosê ye ku li cem gel navê wê Dêra Komk e û ermen jî jê re dibêjin Bedros Arakyal, her wiha li Çiyayê Meretoyê Keşîşxaneya Surp Astvadzadzîn ango Dêra Dayîka Meryemê a Marûta jî piroztirîn avahiya vê herêmê ye. Çiftçi da zanîn ku digel van li gelek gundan kavilên ji ermenên berê mane hene. Çiftçi da zanîin ku ji bilî avahiyan yek ji şaheserên folklora ermenan jî Destana Tavîtê Sasonî heye ku yek ji xweşiktirîn mînakên wêjeya devkî ye ku ji hêla gundiyên çiyayên Sasonê ve dihat vegotin.

## Têkiliya kurd û ermenan û cejna 'Vartavar'ê

Behçet Çiftçi, bi ser cejna 'Vartavar'a ermenan jî, têkiliya kurd û ermenan nirxand û got: "Ji çavkaniyan diyar e ku ji serdemên kevin ve kurd û ermen cîranên hev bûne di nav hev de jiyane û ji konfederasyona Naîrî û Ûrartûyan vir de ev yekîtî digel ku carinan xerab bûye jî berdewam kiriye û eşîrên kurd û ermenan li hin cihan bi hev re li hin cihan jî ji hev cuda jiyane"





# Zimanê zarokan rengê jiyana nû ye

Mehmet Emîn Kan

Wêjeya zarokan grîngtirîn binemaya zimanan e û rewşa zimanê kurdî ya Bakurê Kurdistanê bi jan û xem vê grîngiyê nîşan dide û bêxemiya ziman wek kelemekî dirinde di gewriya kurdan de diçikîne. Lê heger kêm bin jî aktîvîstên ku ziman di kêliya şitil de av didin û hez dikin ku bingeheke baş a destpêkê damezirînin hene û roj bi roj xebatên serkeftîtir pêk tînin. Weşanxaneya Hîvayê ku ji bo armanceke wiha di 2014'an de ji alî 4 hevalan ve hatiye damezirandin û di navbera salekê de çendîn berhemên granbûha afirandine yek ji van xebatan e. Ev çar heval hewl didin ku bi zimanê zarokan huner, dîrok û çanda kurd bi zarokan bide hezkirin û têgihîştin.

## Wêjeya Zarokan bi Hîva'yê digeşe

Edîtorê weşanxaneya Hîvayê Ulku Bîngol di derbarê pêvajoya avakirinê û meşandina xebatên weşanxaneya Hîvayê de diyar kir ku wan bi armanca tenê xebatên wêjeya zarokan bike vê weşanxaneyê ava kirî ye û wan hewl daye ku li gel berhevkirin û weşandina hemû şêwe berhemên wêjeya zarokan, berhemên perwerdehiya ziman jî biweşînin. Bîngol kêfxweşiya alîkariya dostên zimanê kurdî bi xweşbînî nirxand û got: "Di warê pedagojî, werger û redaksiyonê de gelek hevalên din ku piştgiriyê didin me hene. Hîva, bi dûrûşma 'Zarok vejîna ziman in' dest bi vî karî kir. Zarokên neteweyekî eger bi zimanê xwe nepeyive, nexwîne û nenivîse rewşa wî zimanî di xeteriyê de ye. Ne tenê em, armanca sazî û weşanxaneyên din yên kurd jî ew e ku zimanê kurdî geştir bibe, lê belê cudahiya me ew e ku em tenê wek tiştekî spesîfîk li ser wêjeya zarokan rawestin"





"Zarokên neteweyekî eger bi zimanê xwe nepeyive, nexwîne û nenivîse rewşa wî zimanî di xeteriyê de ye. Ne tenê em, armanca sazî û weşanxaneyên din yên kurd jî ew e ku zimanê kurdî geştir bibe, lê belê cudahiya me ew e ku em tenê wek tiştekî spesîfîk li ser wêjeya zarokan rawestin"

## 'Bila haya Bakur ji zaravayan hebe'

Ulku Bîngol anî ziman ku wan bi 5 rêzepirtûkên çêrokî yên Mem Bawer ên bi sernavê 'Mîro' dest bi weşanê kirî ye, bi pirtûka keçika 6 salî Hîva Yuce a bi nave 'Reqên zeryayê û çîroka wan' dom kirine û bi vî awayî hejmara pirtûkên wan ên ku weşandine zêde bûne. Bîngol wiha pê de çû: "Me pirtûkên wek; 'Xezal û Qertel', 'Rodî', 'Kewên Gozel', 'Welatên Moriyan' çap kir. Pirtûka Hîva Yuce ji bo me li dirûşma avakirina Hîva'yê pir digoncivî. wek ku me anî ziman zarok zimanê xwe nexwînin û nenivîsinin, ev ji bo wî zimanî xeterî ye. Wekî din me 3 pirtûkên din ên bi navê 'Masîkê', 'Hirç û Rovî' û 'Batirsok' bi zaravayên kurdî ên soranî, zazakî û kurmancî weşand. Ev ji bo me cihê kefxweşiyeke mezin bû" Ulku Bîngol her wiha da zanîn ku herî dawî wan ji bo zimanê zarokan dewlemendtir bibe û hêsaniyê peyda bike wan ferhengek amade kirî ye û weşandiye û got: "Ji bo mezinan jî sûda vê ferhengê heye; Lewre ev ferhengeke taybet e. Peyvên ferhengê bi wêneyan hatine dewlemendkirin. 650 peyvên ku di jiyana rojane de pir têne bikaranîn bi wêneyan hatine xemilandin. Di warê ferhengnûsiya kurd de ev mînakeke yekem e. Me xwest hem zarok û hem jî yên ku nuh dest bi kurdî dikin ku dema di nivîsar û pirtûkan de rastî peyvên ku tênagihîjin hatin, li gel wêneyan wan peyvan hîn bibin. Wêne têgihîştina tiştan hêsantir dike. Me dest bi rêzepirtûkên pêşdibistanê kir. Heta niha 2 ji wan hatin amadekirin û weşandin. Yek jê pirtûka bi navê 'Rengîn' e û ji bo zarokên 3 û 4 salî ye. Ya din jî pirtûka bi navê 'Kulîlk' ku ew jî ji bo zarokên 5 û 6 salî ye. 'Rengîn' pirtûka Ayşe Kiliçkaya û 'Kulîlk' jî ya Aynûr Ozbay bû. Her wiha 'Kulîlk' li gel kurmancî bi zazakî jî hate weşandin"

Ulku Bîngol diyar kir ku ew dixwazin li Bakurê Kurdistanê kurmanc û zaza ji zaravayên hev agahdar bibin û bi vê mebestê ew hewl didin ku pirtûkên bi zaravayên cuda yên kurdî çap bikin. Bîngol, amaje bi wê yekê kir ku bi vî awayî çavên zarokan li hevokên zaravayên din digoncive û ev yek rê li ber hînbûna zaravayên din jî vedike. Bîngol got: "Ev ji bo soranî û zaravayên ku li bakur têne axaftin jî sûdeke baş pêk tîne û ev yek zaravayan nêzîktirî hev dike. Bi vî awayî zazakî jî li gel kurmancî dikeve gellek malan û hestiyariya wê berztir dike"

## Ziman bi rewşa civakê re têkîldare

Ulku Bîngol di berdewamiya axaftina xwe de qala xwe jî kir û da zanîn ku ew ji zû ve ye bi ziman re eleqedar e, lê belê wî li gel hevalên xwe karibûne salek berê dest bi vê projeya xwe ya wêjeya zarokan bikin. Bîngol wiha dom kir: "Ziman bi rewşa civakê ya siyasî û rewşenbîriyê re têkildar e. Îro li Kurdistanê ji aliyê raman, tekoşîn û rewşa polîtîk ve pêşketinek heye, heman tişt di ziman de jî heye, dema ku me nû dest bi xebatan kir û heta niha em dinhêrin ku em bêtir pirtûkan difroşin, yanî ev jî hene, bi hev û din re girêdayî ne. Dema ku ziman pêş bikeve xwendevan jî çêdibin, dema ku bala mirovan bikşînin ew dem divê berhemên nû derkevin holê" Bingöl anî ziman ku zarok mamosteyên malbatane û got ; '' Dema ku em pirtûkan amade dikin bi mamosteyên ku dikevin dersa kurdî, bi saziyên me re em pêşniyazên wan digirin û li wê gorê çi pêwîst be em wî dikin. Wek mînakekê ez bejim , çend roj berê di civînekê de mamosteyekî kurdî got ku dema ez ketim dersa kurdî hinek zarok hebûn qet kurdî nizanibûn lê piştî du sê mehan şûn de zarok bi kurdî hîn bûn û malbat dibêjin ku ew zarokên ku kurdî nizanibûn aniha tên peyvan nîşanî me didin, dema ku em peyveke tirkî dibêjin, dibêjin; na, ne wisa ye kurdî ev peyv ev e, ango zarok dibin mamosteyên malbatan jî. Ew tiştekî gelekî girîng e ku em zarokan perwerde bikin, zimanê xwe nîşanî wan bidin, zimanê kurdî bi wan bidin hezkirin, bi çîrokan, bi komepirtûkên perwerdehiyê, bi ferhengan em bidin hezkirin ew dem her zarokekî wê bibin mamosteyên dilxwazên zimanê kurdî ew tiştekî gelekî balkêş e"

## 'Wêjeya devkî ya zarokan dewlemend e'

Bîngol di dawiya axaftina xwe de qala pêwendiya zarok û pedagojiyê kir û got: "Em dikarin wêjeya zarokan di navbera 2-14 saliya wan de bidinê. Piştî ku temenê wan digihîje 14'an, êdî kirasê zarokatiyê ji ser xwe diavêje. Ji bo vê yekê, di heyama mezinbûna zarokan de divê bîr, hiş, xeyal û ramanên zarokan bi zimanê dayikê, bi leystik û pirtûkan bigihîje û asoyê wan ê ku ji bo zanînê pir derfetdar e fireh bibe. Ji bo ku di siberojê de zarok jiyana xwe watedar bike pêwîstî bi vê yekê heye. Di vir de rola helbestê jî girîng e. Zarok gava zimanê zikmakî hîn dibin, êdî hin argumanên din rê li ber xeyalên wan vedikin. Wêjeya devkî ya kurdî ya zarokan têra xwe dewlemend e. Ji bo wê em dibînin gava ku di destpêkê de kesên ku xwestine ji bo wêjeya zarokan tiştekî bikin, ji wêjeya devkî sûd wergirtine. Di van salên dawî de pirtûkên zarokan ên ku tên weşandin piraniya wan çîrokên gelêrî ne. Berhemên wêjeya zarokan ên ku têne weşandin, rastî û çewtiyên jiyanê, dadwerî, hezkirin, rexne, pend û yasayên ku ji alî civakê ve hatine pejirandin, qencî, xerabî û alîkariyê nîşanê wan didin.



# Li rêça mîrê sînemaya kurd

**Evîndar Tekîn**

Bêguman Yılmaz Guney, yek ji mezintirîn sînemagerê kurd ê cîhanê ye. Li gel vê bêgumaniyê jî li ser sînemaya Yılmaz Güney hin nîqaşên afirîner têne kirin. Güneyê ku di 9'ê Îlona 84'an de çû ser dilovaniya xwe li dû xwe mîrateyeke pir dewlemend a sînemayê hişt. Bi mebesta 31 saliya koça wî me xwest em Güney bi bîr bînin û li gel pisporekî sînemayê, şêwe û şarezayiya sînemaya wî têbigihijin.

### Di sînemaya kurdî de cihê Yılmaz Güney

Derhêner, nivîskar û rexnegirê sînemayê Mesut Kara, ku xwedî gelek pirtûkên li ser sînemayê ye, li ser sînemaya Güney nirxandinên xwe bi me re parve kir. Kara qonaxa destpêka sînemageriya Güney a salên 1950 û 60'an weke dema aksiyonî rave kir. Kara anî ziman ku Güney, wek lehengekî serkeftî ê filmên aksîyonê, di nav filmên Yeşilçamê de bi cih bûye, piştî hevkariya bi Ömer Lütfi Akad re dest bi derhêneriyê kiriye. Kara got: “Pir navdar bûbû û bê tirs kurdbûna xwe dianî ziman û piştgiriya tevgera azadî ya kurd dikir. Piştî sala 1982'an ku ji girtîgehê reviya û çu Ewropa, ji hemwelatiya Tirkiye'yê hate derxistin” Kara destnîşan kir ku li gor vê gotarê em dikarin di filmên “Umut”, “Yol”, û “Sürü” bibînin ku Güney, aliyên curecur ên nasnameya kurdî çawa bi nêrîneke pêşverû derbasî qada sînemayê kiriye û bi van agahiyan pênaseya sînemaya kurdî ew sînema ye ku ji hêla derhênerên kurd ve taybetmendiyên sosyolojîk, flklorîk, çandî ên nasnameya netewî a kurdan di xwe de dihewîne û di nav vê sînemayê de cihekî taybet ê Yılmaz Güney heye ku em dikarin bêjin li Tirkiyeyê bavê sînemaya kurdî ew bixwe ye. Kara got ku Yımaz Güney; bi filmên wek “Umut”, “Sürü”, “Yol” di sînemaya Tirkiye'yê de kurd ji figuranîtiyê, ji hêmana talî a lîstikê (pasvanî, bexçevanî) xilas kirine û tevî jiyana xwe ya rojane, bêriya xwe, nirxên xwe yên çandî û folklorîk ew kirine kirdeya filman, bi vê peywendê filmên wî yên wekî “Yol”, “Sürü”, “Umut” divê di nav çerçoveya sînemaya netewî a kurdan de bê pejirandin û wisa domand: “Yımaz Güney dibêje: ‘A rastî Sürü, dîroka netewa kurd e lê heke min leheng bikurdî bidana axivîn tevahî wê biketana heps û zindanan.’ Heke em di dîroka nêz de kesên ku ji ber ku bi kurdî axivîne, navên wan bi kurdî ne, bi kurdî pirtûk û govar derxistine hatine binçavkirin û girtin berbiçav bigirin emê baş têbigihîjin ku li ser şert û mercên wê demê Güney xwestiye çi bêje”



Mesut Kara

Mesut Kara, anî ziman ku jiyan û şêweya wî ya realîstiya hişk, bandorê li filmên wî jî kirine û ev neyênîtî bandoreke nebaş li zimanê sînemaya wî ya mînîmalîst û realîst kiriye; Lê li gel vê bandora neyînî ya li ser estetîka filmê jî, ji hêla peyamandanê ve filma “Arkadaş” filmeke gelekî taybet û girîng e. Kara got ku Yılmaz Güney, herikandina sînemaya kurdî guhertiye û ew li dinyayê daye nasîn û li gel vê jî bi filmên xwe rêya sînemaya kurdî jî vekiriye û wisa domand: “Sînemaya Yılmaz Güney ji bîrdozî û hişmendiya serdest azade ye û sînemayeke rexneyî ye. Lê belê rexneyîbûna wî bi qasî sansûrê destûr daye, lewre salên ku wî film dikişandin hişmendiya sansûrkar û qedexeker mîna dîwarekî berê sînemaya dijber girtibû û fikirandina azad sînordar kiribû. Ji ber vê yekê hestyariya wî ya li ser pirsgirêka kurd herî zû piştî filma Yol derxist derveyî welat û ji girtîgehê reviya çû Parîsê bi rehetî da diyarkirin. Ev weke destpêkekê bû lê mixabin emrê wî têrê nekir.” Kara bi bîr xist ku Güney, sînemagerekî piralî bû û ji bilî sînemayê, edebiyatzan bûye; di ciwaniya xwe de bi nivîsadina çîrokan têkiliya wî bi edebiyatê re çêbûyie û piştre jî helbest û roman nivîsandine. Kara bale kişand ku di qada sînemayê de jî Yilmaz Güney'ekî piralî heye ku senarîstî, lîstikvanî, derhênerî, çêkeriyî kiriye û di qada senaryoyê de yekem pêşketina xwe ya girîng di filma “Hudutların Kanunu” ya bi derhêneriya Ömer Lütfi Akad de pêk tîne. Kara got ku heta “Umut” digel bi dehan filmên aksîyonî di filmên baş ên wekî Kızılırmak/Karakoyun, Hudutların Kanunu û Seyit Han de lîstiye û êdî temaşevanên evîndar ên wî ew dixwestine, wî jiyana mêrên qeşeng serobino kiribû û êdî Yeşîlçamê bi sînemaya Yılmaz Güney teşe digirtiye. Kara got ku Nijat Özön dibêje Yılmaz Güney



**Yılmaz Güney ku li Tirkiye'yê tekane kes e ku di qada sînemageriyê de navê wî bi tîpên zêr hatiye nivîsandin. Güney bi avakirina sinemaya xwe ya alternatîf hem li hemberî sînemaya endustriyel rawestiya ye û hem jî derd û kulên çîprûtan di çavên serdestan re kiriye. Û her wiha nîqaşa ku sînemaya wî di nava sînemaya Tirkiye'yê de an wek destpêka sînemaya kurdî bê hesibandin jî her li ber destê sînemahez û sînemageran e.**

ew hunermend e ku ekola Ö. Lütfi Akad domandiye, geş kiriye û tekane mîratgirê wî ye, her wiha kesê ku ‘Serdemeke Nû’ jî daye destpêkirin Yılmaz Güney bi xwe ye.

### Ber bi ‘Mîrê sînemayê’ ve

Mesut Kara, geşedana sînemageriya Yılmaz Güney jî wisa xulase kir: “Fîlma Hudutların Kanunu ya ku bi derhêneriya Ö. Lütfi Akad hatibû kêşandin ji bo Güney filmeke pir girîng bû. Ji ber ku Güney em di lîstikvaniyê de hem jî di qada senaryoyê de bi pêş ket. Pêşketina xwe wek derhênerekî li pişt kamerayê jî bi filma Seyit Han re pêk anî û êdî sînemayê jî Yılmaz Güney vedîtibû û bi her filma xwe gavên ber bi ‘Kralê Kirêt'iyê ve diavêtin û bi pêş diket. Fîlma “Umut”a ku di sala 1970'î de derhêneriya wê kiribû û bi awayekî bandorker û xwerû qala rastiyê dikir hem di sînemaya wî hem jî di sînemaya Tirkiye'yê de dibe xala werçerxê û dibe şahesereke. Her wiha di vê filmê de berovajî filmên berê ku qehreman û mêrxas bû, antîqehremanek heye û di rola xwe de li Edene'yê faytonvaniyê dike. Piştî vê filmê, di navbera salên 70 û 74'an de filmên wekî ‘Ağıt’, ‘Baba’, ‘Umutsuzlar’, ‘Yarın Son Gündür’, ‘Acı’, ‘Zavallılar’ û ‘Arkadaş’ li pey hev tên ku her yek ji wan şahesereke.”

Kara sînemageriya Güney bo sînemagerên hem weke dibistan an akademiyekê bi nav kir û wiha domand, “Her wiha ‘Kara bela’ kişand ku nabe mirov wê tenê bi serdemekê yan jî bi filmên wî binirxîne. Wek nimûne; Heke hin filmên xwe yên ku ji hêla hin temaşevanan û rewşenbîrên piçûk ve tên piçûkxistin çênekiribûya dibe ku nedibû ‘Mîrê Kirêt’ ê sînemayê. Dibe ku wê demê ewqas deng venedaba û filmên ku herikandina sînemayê guhert çênekiriba. An jî heke tenê filmên di mêjiyê wî de bihatina kêşandin, dibe ku ji alî gel ve nehatibûya hezkirin û nikaribûya bandoreke bi salan li sînemayê bikira. Divê Yılmaz Güney bi tevahiya jiyan û berhemên xwe bê nirxandin ku wî bixwe jî di hin hevpeyvînên xwe de qala serpêhatiya sînemaya xwe û sedemê kêşana filmên xwe yên ji rêzê kiriye û wan filman ji bo afirandina sînemaya xwe ferz dîtiye.”

Kara wiha domand: “Sînemaya Yılmaz Güney a ku feyza xwe ji kevneşopiyê wergirt û ber bi siberojê ve diçû, li ser rêyeke rast nedimeşiya, bi pengizînan geş dibû û veguherî. Di dema xwe û piştî xwe jî bandorê li gelek sînemageran kiriye, rê nîşan daye û bi roniya xwe rêya wan ronî kirî ye.” Kaya anî ziman ku Güney, li ser pêkanîna sînemayeke serbixwe ya li derveyî sînemaya Yeşilçamê ku wê bibe xwediyê derfetên çêkerî, belavkirin û nîşandayînê, pir fikiriye û ji bo vê jî gav avêtine û bi hevalên xwe yên sînemager re jî li ser vê yekê axiviye, lê mixabin dîlgirtin û cezayên nû dev jê bernedane û nikaribûye vê yekê pêk bîne.